

کەمال میراودەلی

**بەتەمای رەوتی گۆڕانە**

3 ◀



لەبەر خیانەتکردن

**ژنان دەچنە زیندان**

16 ◀



کە قسە بە کوردستان بڵێن

**خەتەر زۆر خەتەرە**

9 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA





**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK **Hejmar / Nr. 30** | 2. Sibat / Februar 2010 | **www.rudaw.net**




## Konsera Aşîtiyê

# Siyasetmedarên Kurdistan'ê li Viyana'ye gihîştin hev!

REŞAD ÖZKAN

Ji herçar beşên Kurdistan'ê siyasetmedar û şexsiyetên kurd li Viyana'yê di konserekî de gihîştin hev. Serokê Herema Kurdistan'ê Mesûd Barzanî, Serokdewletê Awustirya'yê Heinz Fischer, Kevneserokê DTP'ê Ahmet Türk, Serokê Hak-Par'ê Bayram Bozyel, parlamenterê Mûş'ê Sırrı Sakık, kevneparlamenterên kurd Aysel Tuğluk, Sedat Yurttaş, parlamenterên AKP'ê Dengîr Mîr Firat, Gülşen Orhan û Serokê Enstituya Kurd li Parîs'ê Kendal Nezan, li peytexta Awustirya, Wiyana'yê di Konsera Aştiyê ya Şivan Perwer de gihîştin hev. Di konserê de ji herçar beşên Kurdistan'ê siyasetmedar, hunermend û şexsiyetên naskirî jî amade bûn. Konser ji aliyê nezîkî hezar kesî ve hat şopandin. Konser çar katjimêran berdewam kir.

Serokê Herema Kurdistan'ê Mesûd Barzanî di vegera Amerîka'yê de ku rêya xwe bi Awustirya'yê xist tevlî şanda gel xwe tevlî konserê bû û bi siyasetmedarên din yên kurd re jî rûnişt. Hunermend Şivan Perver bi orkestra ya "Ensemble Wien Klang" re li ser dîkê cîh girt. Muzîkvanê ji Başûrê Kurdistan'ê kompoşîtor Dilşad Saîd, Peter Alexander Leussink (tenor) û Azîs Sadikovîc (drigent) jî tevlî konserê bûn. Moderasyona Konserê jî alî Willi Resetarîs hat kirin.



(Wêne: Daylife)

*Ji rastê Mesûd Barzanî, Heinz Fischer, Şivan Perwer, Ahmet Türk, Sırrı Sakık.* (Wêne: Rûdaw)

Konser ji aliye Serokkomarê Awustirya'yê Hainz Fischer ve hat vekirin. Fischer di axaftina xwe de wiha got: "Ez pir kefxweş im ku îro konserek kurdî li Viyana'yê de tê lidarxistin. Ez vê konserê ji bo tekîlîyê navbera gelan, wek pireke di navenda mirovahiyê dibînim. Mirov gerek ji hevûdû hezbikin; regê wan, esle wan, milletê wan çibe jî ev tişt pir ne muhîm ê. Tiştê girîntir hatina me ya cem hev û hurmeta me ya ji hevre ye. Ez Serokê Herema Kurdistan'ê Kak Mesûd Barzanî bi rih û cane xwe silav dikim û dibêjim hûn bi xer hatine Viyana'yê. Min dixwest ku hemû kurd azad bin."

Parlamenterê AKP'ê Dengir Mir Mehmet Fırat jî bang li Şivan Perwer kir ku ew wegerê Tirkîye'yê. Hevserokê kevn yê DTP'ê Ahmet Türk jî got; "Hatina me ya Viyana ne tenê ji bo guhdarkirina konserekî ye, ji bo ku em piştgirî bidin Şivan ku ew daxwazîyên gelê kurd, êş û hêvîyên wan bi muzîka xwe tîne ziman, em hatin."

Piştî konserê Serokê Herêma Kurdistan'ê Barzanî, bi Serokê DTP'ya qedexekirî Ahmet Türk re hevdîtinek jî pêk anî. Barzanî û Türk di derbarê prosesa 'vebûna kurd' û rewşa siyasî ya Tirkiye'yê nîqaş kirin.

# Perwerdeya kurdî li Ewrûpa popûler dibe



(Wêne: Rûdaw)

Serlêdana dêbavên kurdên bajarê Köln'ê ji aliyê Saziya Perwerdeyê hate qebûlkirin. Bi vê yekê hejmara dibistanên bajarê Köln'ê ku şagirtên kurd lê ji aliyê mamosteyê zimanê kurdî Mahmut Akbayır tên perwerdekirin, bû çar. Akbayır got ku mafê perwerdeya bi kurdî li Almanya'yê beriya deh salan hatiye pejirandin û li kîjan herêma Almanya'yê herî kêm 15 dêbavên kurd serî li Saziya Perwerdeyê bidin, serlêdana wan wê bê qebûlkirin.

## Hevseroka BDP'ê Gültan Kışanak:

# Hikûmeta AKP'ê hevalên me rehîn girtine

Piştî girtina DTP'ê kurdên Bakur ji bo berdewamkirina siyaseta yasayî Partiya Aştî û Demokratîk (BDP) damezirandin. BDP di demekî kin de rojeva siyeseta Bakure Kurdistan´ê û Tirkiye'yê mijûl kir. Rayedarên dewleta tirk bi damezrandina vê partiyê ve dest bi operasyonên girtina kadir û şaredarên BDP'ê kirin. Bi dehan şaredar, rêveber û endamê vê partiyê hatin girtin. BDP ku ji bo tanzîma navxweyî û tesbîtkirina siyaseta xwe dawiya hefta borî kongreya xwe lidarxist, organên rêvebiriyê jî hilbijart. Parlemena Amed'ê ya BDP'ê Gültan Kışanak ku wek hevseroka BDP'ê hat hilbijartin, pirsên Rûdaw'ê bersivand. ▶ 6



*Gültan Kışanak* (Wêne: Diha)



# Xwendekarên Hollanda demokrasiya Kurdistan’ê lêdikolin


*Xwendekarên hollandî li bajarê Hewler´ê.* (Wêne: Rûdaw)

MERÎWAN FEYZULLA SALEYÎ

**Hewlêr -** Şandeke ji dû zanîngehên Hollanda bo geşteke yek hefteyî bi mebesta bicîhanîna lêkolînekê liser proseya demokratîzekirina navçeyê roja 17.01.2010’an de, hat peytextê Herêma Kurdistan’ê, bajarê Hewlêr’ê.

Ev geşteya heft rojî ku bi navê “Dîktatorî û Demokrasî li Rojhilata Navîn”e, taybet e bi pirojeya lêkolînekê derbarê proseya demokratîzekirina Kurdistan’ê.

Şande ji 10 kesan; mamosteyê zanistên siyasî Paul Arts, rêveberek, 4 xwendekarên kur û 4 xwendekarên keç pêk tê. Hemû endamên şandeyê ser bi beşên zanistên siyasî û peywendiyên derekî yên herdû zanîngehên navdar ên bajarê Amsterdam “Zanîngeha Azadî ya Amsterdam” û “Zanîngeha Amsterdam” in.

Alma Brahîmovitch 20 salî ye û xwendekar li beşê zanistên siyasî yê Zanîngeha Amsterdam wiha got: “Me li Hollanda lêkolîna xwe destpê kir, lê geşteya me bo Herêma Kurdistan’ê bi mebesta bidawîanîna lêkolîna me ye ku liser proseya demokratîzekirina herêmê ye. Em li gel siyasetvan û berpirsên bilind civiyan, herwiha li gel rêxistinên ne hikûmî NGO`s û me xwendekarên zanîngeha Hewlêr û Silêmaniyê jî dîtin.”

Xwendekar Marlin Ferhagen a 19 salî ser bi beşê zanistên siyasî li Zanîngeha Amsterdam`ê jî dibêje: “Em gihan vê encamê ku bê guman em dikarin bêjin Herêma Kurdistan’ê ne dîktatorîk e, lê demokrasiyeke gihayî jî tune, demokrasiya Kurdistan’ê nûciwan e û proseya demokrasiyê hê bipêşve diçe.”

Bi baweriya xwendekaran serdestiya desthilata hizbî ya herdû partiyên serekî PDK’ê û YNK’ê li Herêma Kurdistan’ê aliyekî negatîf ê demokrasiyê ye lê hebûna opozisyonê pêngaveke erênî ye ber bi şefafiyeteke zêdetir di hikûmetê de.

Ferhagen û Brahîmovitch gotin: “Xaleke erênî ye ku hizbên opozisyonê li vir hene, wek Tevgera Goran.” Lê li gor wan divê Goran jî xwe bipêş bixe.

Di geşta dîtina rastiyê li herêmê de, xwendekar kêfxweş bûn ku rêjeyeke zêde ya jinan li parlamenê Kurdistan’ê heye ku digihe ji sedî 30 wek kota. Di heman demê de, zêde bi awayekê erênî berê xwe didan aramî û pêşveçûna Herêma Kurdistan’ê. Ferhagen dibêje dema vegere Hollanda wê behsa tecrubeya xwe li Herêma Kurdistan’ê bikin xwendekarên din jî agahdar bikin ku Herêma Kurdistan’ê aram û modern e û li berevajî tiştên ku di navgînên ragehandinê de derbarê Îraqê tên belavkirin e.

Serperiştiyarê şanda xwendekarên hollandî, derçûyê beşê peywendiyên derve bi navê Christ Rawcrock bû. Ev cara dûyem e seredana Herêma Kurdistan’ê dike. Ev xwendekarê 22 salî bi hêvî bû ku sala dahatû programê xwendekarî ta veguherbar li Kurdistan’ê bê çêkirin, da ku xwendekarên kurd jî bikaribin seredana Hollanda bikin. Christ Rawcroc wiha axifî: “Me li gel zanîngeha Kurdistan li Hewlêr’ê gotûbêj kirin, em hêvîdar in ku sala dahatû 2011, xwendekarên kurd jî bikaribin seredana zanistgehên Amsterdam`ê bikin.”

Xwendekarên hollandî di dema seredana wan bo Kurdistan’ê de, xwendekarên Zanîngeha Selahedîn û Kurdistan jî dîtin. Herwiha roja pêncşema borî şandê seredana bajarê Silêmaniyê jî kir û berpirs û xwendekarên beşê zanistên siyasî û rêxistin û saziyên ne hikûmî NGO`s, dîtin. Herwiha li gel navenda medya ya serbixwe li Kurdistan’ê IMCK jî, ku rêxistineke taybet e bi perwerdekirina rojnamevanên navxweyî, civiyan.

Roja yekşembê jî, xwendekarên hollandî ji firokexaneya Hewlêr’ê ber bi Amsterdam`ê ve firiyan û lêkolîna xwe qedandin.

MUSEDEQ TOVÎ

## Dîalog... Lê weke ew dixwaz e!



Li rojên 16-17/1/2010 di nêvbera rojnamevanên Herêma Kurdistan’ê û welatê Tirkiye‘yê de, hevdîtineke rewşenbîrî û hizrî li bajarê Stanbol‘ê hat sazkirin. Bêguman her bizaveka bi armanca li hevnêzîkkirina tirkan û gelê kurd, li her çar parçeyên welatî wî de were kirin, di her warekî de, her aliyekî ku pê rabibe hêjayî destxweşiyê ye. Ez bawer im çi qas ev pêngav di nêvbera rewşenbîran de hebe, dê zûtir ew girêya derûnî ya li cem tirkan vebibe. Ew girêya ku bi dirêjahiya heştê salên borî li hemberî kurdan di derûnê tirkan de dirustbûyî û roj li pey rojê qayimtir bûye. Ew girêya derûnî ya ewqas xwedî tesîr ku ji dilê tirkekî (Çi deshelatdar be yan kesekî normal) nahê ku peyva Kurdistan’ê ji devê wî derkeve.

Mijara ku hêşt ez van peyvan binivîsim, programa Rojev a kanala TRT-6 bû. Ew kanal kanalekî kurdî ye, peyamnêr kurd bû û li salona hevdîtinê wî pirsên xwe ji beşdarbûyên kurd û tirk dikirin. Lê manşêta programê (Têkiliya Tirkiye’yê û Bakûrê Îraq‘ê) bû. Li şûna Herêma Kurdistan’ê yan Başûrê Kurdistan’ê, di pirsên xwe de, peyamnêrî gotina (Bakûrê Îraq‘ê) bikar di anî. Heya ku rojnamevan Şiwan Taving di bersîva pirsên wî de, hat ziman û rexneyeke tund lê bi şêweyekî rewşenbîrî li wî peyamnêrî girt, ji ber bikarneanîna destewajeya Herêma Kurdistan’ê.

Ez bawer im ku ew peyamnêr ne bi xwe ye, bê hezkirina wî li şûna Herêma Kurdistan’ê, gotina (Bakûrê Îraq‘ê) li ser wî û herweha li ser kanalê jî hate sepandin. Ev jî şopa wê kanalê ye ku di tevahiya programên wê de peyva Kurdistan’ê qedexeye.

Gelo kanala ku di çarçoveya projeya Vebûna Demokrasiyê ya partiya deshelatdar, AKP ji bo Kurdan hatibe vekirin, lê çênebe peyva Kurdistan’ê têde were bikaranîn, mîna ku ev Kurd ne li ser xakekê jiyan dikin. Erê di dîdareke rewşenbîriya hizrî de ku bi armanca li hevnêzîkkirina di nêvbera tirk û kurdan de hatiye sazkirin, dê çawa dialog serkeve û hevnêzîkbûn dirust bibe? Kesê ku li hemberê te ye, hebûna te û xaka te nasneke? Ev cûrê dialogan serkeftî nabin, ji ber ku aliyê ku xwedî deshelat, hêz û biryar e, dixwaze digel te bikeve dialogê, lê bi gor hezkirina xwe, wate tu kesekî bê xak û bê ziman bî, baweriyê bi wî welatî nake ku tu jiyanê lê dikî, baweriyê bi zimanê te weke zimanekî fermiyê xwandinê nake.

Çar rojan beriya vê hevdîtinê, wate li 12/1/2010 Serok Wezîr, Recep Tayip Erdoğan li hember parlamenterên Tirkiye’yê ragehand ku bi tu şêweyekê nabe zimanê kurdî bibe zimanê fermiyê xwandinê. Lê başe ku wan bi xêra miriyên xwe rê daye ku kurd li malên xwe bi kurdî baxivin û bistirin. Ew hêjî xerabtir ji dialogê digel te dike weke beşek, lê ne hemû. Ew dialogê digel te weke Bakûrê Îraq’ê dike, lê ne wek hemû kurd û ne amadeye digel kurdên Bakûrê Kurdistan’ê, mîna ew dibêjin Rojhelata Tirkiye’yê, dialogê bike. Herçend ku pêwîstir e dialog di nêvbera wan de, ango di nêvbera kurdên Bakûrê Kurdistan’ê û Tirkiye’yê de hebe. Lê ew dialogê digel kurdên Bakûrê Îraq’ê dikin, vê jî guman heye ku çend meremên wan ji vê dialoga mercdar hebin..! Ez di bêjim kurd jî ji wê yekê mezintirin ku bi fîtikekê bikevin dîlanê û bi her mêvandariyekê xwe û derdûrên xwe ji bîra bikin.

# Yekgirtû deriyê xwe ji jinên serqot re vedike

DASTAN SEDÎQ

**Silêmanî -** Yekgirtû ya Îslamî ya Kurdistan’ê deriyê rêxistinên xwe ji bo keç û jinên serqot vedike. Sekretera Yekgirtû ya Xwîşkên Îslamî jî dibêje ji ber ku ew serqotan jî dihewînin, jimara rêxistinên Yekgirtû ya Xwîşkan zêde berfireh bûye. Lê belê rêxistina Xwîşkên Îslamî wê jinên serqot tenê wek berendam qebûl bikin. Sekretera Yekgirtû ya Xwîşkan Bêxal Ebûbekir pêdagiriyê liser vê yekê dike ku ji destpêka dirustbûna Yekgirtû ve xwenuxumandin ji bo endametiyê wek şert nehatiye danîn û dibêje ti deman de di peyrew û programa partiyê bi giştî de û liser astê rêxistina Xwîşkan û xwendekaran jî “hîcab” nebûye merc. Ebûbekir got; “Her kesê ku baweriya wî bi peyrew û programê hizba me were û bi awayekî ji xweber hatibe, em qebûl dikin û heta niha jî me ji ber ku serqot e ti kes red nekiriye.”

Bêxal Ebûbekir dibêje di ola Îslam’ê de hîcab yek ji pêwîstiyên olê ye, “Piraniya me di destpêkê de serqot bûn, dema serqotek dixwaze bibe endama me, em hewldanan pê re dikin ku bi vîn û xwesteka xwe hîcab lixwe bike. Nebûna mercê hicabê li pêşiya jinên serqot hiştiye ku rêxistinên Yekgirtû ya Xwîşkan û Yekgirtû ya Îslamî berfirehtir bibin.”

Sekretera Rêxistina Xwîşkên Îslamî Edîbe Ebdul dibêje ku, ew serqotan ne wek endam lê wek alîgir qebûl dikin. Edîbe wiha diaxife: “Em wan hişyar dikin û yasayên şerîta Îslam’ê û peyrew û programê Rêxistina Xwîşkan ji wan re ron dikin, ger qebûl kir û hicab pesend kir, emê wê wek endam qebûl bikin.”

Endama Yekgirtû ya Xwîşkan Benan Elî, keseke serqot di hizba wê de hebe lê bi şertê ku fêdê bigihîne hizbê normal dibîne: “Ne ku her kesê bixwaze bê ku guh nede ti tiştî bibe endam.” Herwiha Benan dibêje; “qebûlkirina jinên serqot bi guherîn û rewşa niha ya Kurdistan’ê ve girêdayî ye: Jiber ku giraniya hizba Yekgirtû heye û ger ji niha ve mercê hicabê deyne, wê nikaribe balansa xwe biparêze û wê jimareke zêde ya xelkê jê dûr bikevin.”

Saye Elî ku endama Yekgirtû ye û serqot e jî dibêje; “Heta niha ji aliyê Yekgirtû ve daxwaz ji min nehatiye kirin ku cilên hicabê lixwe bikim, lê dibe ku di pêşerojê de li jêr karîgeriyê lixwe bikim.”





Mamosteyê Zanîngeha Qeter'ê Elî Qeredaxî, ji Rûdaw'ê re piştrast kir ku Yekîtiya Cîhanî ya Zanayên Misilman, bo navbijîkirin û rawestandina şerê navbera Hikûmeta Yemen'ê û çekdarên hûsiyên Sede'yê de teklîf li wî kirine.

Prof. Dr. Elî Qeredaxî

# Kurd, Yemen'ê û hûsiyan li hev tînin?

**Hewlêr -** Serokê Kombenda Îslamî ya Kurdî Prof. Dr. Elî Qeredaxî ji bo navbijîkirin û rawestan- dina şerê navbera Hikûmeta Yemen'ê û çekdarên hûsî diçe Sena ya peytextê Yemen'ê. Qeredaxî ragehand ku derbarê xirabkirina navê pêşmergeyan wê "giliyên tund" li hûsiyan bike.

Qeredaxî got, bo navbijîkirin û rawestandina şerê navbera Hikûmeta Yemen'ê û çekdarên hûsiyên Sede'yê de teklîf li wî kirine: "Me hewlên mezin dane ku navbijêkirinê di navbera sê aliyan, hikûmeta Yemen'ê, hûsî û Tevgera Başûr ku daxwaza cudabûnê dikin de, bikin."

Qeredaxî ku berpirsê Komîsyona Pirsgirêk û Kêmjimarên Misilman ya ser bi Yekîtiya Cîhanî ya Zanayên Misilman e daxwiyand ku hewldanên rawestandina şer ev mehek in destpêkirine: "Di destpêkêk de, me şandeyek bi serokatiya Serokê Hizba Îslamî li Malezya ku hizbeke mezin e û fraksyona wê li parlamenê heye û çend wîlayetên Malezya birêve dibe şand û şande çû Yemen'ê û li gel Cîgirê Serokkomar civiya û piştre çû Îran'ê. Ji aliyekî din ve jî Serokwezîrê Malezya çû Erebistan'a Siûdî ku ew jî aliyekî şer e û hûsiyan sînorên wê derbas kirine."

Navbirî ron kir ku Yekîtiya Cîhanî ya Zanayên Misilman biryar daye hewldanên aştiyê berfirehtir bike bi beşdariya çend kesayetiyên payebilind ên cîhana Îslamî û got: "Niha em li gel hemû aliyan gotûbêjan dikin û em li benda rêxistina dema seredanan dikin ku em herin Yemen'ê."

Havîna borî gereke nû ya şer û pevçûnê di navbera Hikûmeta Yemen'ê û çekdarên hûsî ku Şîayên Zeyd in vêket, û Hikûmeta Ye-men'ê Komara Îslamî ya Îran'ê bi piştîvanîkirina hûsiyan tohmetbar dike. Jiber derbaskirina sînorên Erebistan'a Siûdî jî ji aliyê çekdarên serhildêr ve, artêşa Erebistan'a Siûdî jî tevî şer bûn heta ku hefteya borî hûsiyan peşvekişana xwe bi yekcarê ji xaka Erebistan'a Siûdi ragehandin.

Hikûmeta Yemen'ê bo kontrolkirina baregehên çekdarên hûsî ku dikevin navçeyên çiyayî yên dijwar li parêzgeha Sede, ji xeynî hêzên artêşê hawara xwe gihand hezarên çekdarên millî yên ser bi eşîran ve ku wek eşîrgirên xwebexş tên naskirin, lê çekdarên Hûsî navê pêşmergeyan li van çekdarên eşîrgir kirin û wan tohmetbar dikin ku bo talankarî û rijandina rûmeta Şîayên Zeydî tevî artêşê bûne.

Prof. Dr. Elî Qeredaxî şaşmayîna xwe ji xirabkirina navê pêşmergeyan pêşan da û bo Rûdawê ragehand ku ewê giliyên tund li serkirdeyên hûsî bike: "Min ne bihîstiye ku nave pêşmergeyan bi vî awayî hatiye, lê dema şande here wir bê guman ezê behsa vê xalê bikim û ji wan re ron bikim ku pêşmerge canfidayên Kurdistan'ê ne û naçin ser xaka ti kesî û ne amade ne ti karên din bo ti aliyan bikin."

SELAM SEDÎ

## Li Yemen'ê caş Pêşmerge ne!



Li Yemen'ê, kesên dijî rêjîma Elî Ebdulla Salih in, liser zarê Şîa'yên Zeydî yên Herêma Sede ve wek kêmkirinekê ji şervanên eşîrgir ên ku kiras liber wan e û xencerên wan liber kemera wan e û didin pêşiya artêşa fermî di şerê dijî hûsiyan de, ji wan re dibêjin pêşmerge!.. Erê, pêşmerge yên pêşmerge! Ger mirov bawer nake here li daxwiyaniyên ku hûsî rojane derbarê bûyerên bereya şer belav dikin, baş binere! Li malperên internet û bi taybetî jî li malperên yemenî binere. Niha medya erebî jî bi rêya zêde dûbarekirina vê hevoka ku bi xelet hatiye wergirtin, wateyeke din bo pêşmerge darêje (Dinivîsin eşîrgirên xwebexş "pêşmerge") êdî yek ji wan ron dike ku: "Ev hevoka pêşmerge ji pêşmergeyan Îraq'ê hatiye girtin ku di şerê dagîrkirina welatê herdû robaran de nav û dengê wan belav bû. Ev navlêkirin ji aliyê daniştvanên Sede ve nîşana ne razîbûneke giştî bû beramberî pêngava artêşê ku hawara xwe gihand şervanên ser bi eşîran. Di nav xelkê de hatibû belavkirin ku pêşmerge hatine milk û samanên hevwelatiyan talan bikin." Tiştê mirov şaş dihêle ku şervanên eşîran jî navê pêşmerge qebûl nakin û bi çavê talançiyan berê xwe didin wan!

Ev paradokseke ecêb e ku di nav 300 milyon erebên misilman û zêdeyî 600 milyon kesên misilman û ne ereb de, niha kurdek hewl dide navbijîkirinê di navbera hikûmeta Yemen'ê û çekdarên Hûsî de, bike.

Serokê Kombenda Îslamî ya Kurdî û mamosteyê Zanîngeha Qeter û Endamê Yekîtiya Cîhanî ya Zana yên Misilman û Serokê Komîsyona Pirsgirêk û Kêmjimarên Misilman Prof. Dr. Elî Qeredaxî ev erk lixwe girtiye û liser daxwaza Rûdaw'ê biryar daye dema here ba Hûsiyan ne razîbûna kurdan liser xirabkirina navê pêşmergeyan, rabigihîne.

Mirov şaş dimîne ku medyaya kurdî ewqasî kurtbîn bûye û di nav karûbarên herêmî de nuqim bûye ku haya wê ji van tiştan tune yan ger bi tesaduf jê haydar bû jî, bi awayekî şaş fam dike û xelkê jî şaş dike. Wek mînak rojnameyekê hizr kiriye ku mebesta wan ku hêzeke pêşmergeyan ji vir hatiye birin û wek ku skandalek vedîtibe di cîh de telefona Birîkarê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer kiriye, Yawer jî yekser red kiriye ku pêşmerge şandibin Yemen'ê û gotiye: "Kenê mirov tê". Bi rastî ev tohmet ger bi kêrî girî neyê, bi kêrî pêkenînê nayê. Silêmanê Alîxan ku hevkarekî me li Almanya ye, berî demekê di jimareke Rûdaw'ê de behsa wê yekê kiribû ku çawa li hinek welatên erebî hevoka pêşmerge bo diz, rêbir, bêrîkşêlan tê bikaranîn! Gelo ev xirabkirina nave pêşmerge ji ku tê? Wek herdem bi tenê "dijminên neteweya me" gunehbar in?.

Berpirsên me xwe nîgeran û dilgiran dikin ger yek ji pêşmergeyan re bêje milîtant. Militant yan jî mêlîşiya wek dijûnekê tê jimartin. Her hêzeke leşkerî xwedî bawerîya siyasî mîlîşiya ye, bivê nevê. Ev şeş sal in behsa yekkirina îdare û hêzên pêşmergeyan tê kirin ku hê li Koy'e qaymaqam bê pirs û agahdariya parêzgarê Hewlêr'ê diguherin!

**Cewher Namiq:**

# Butçeya geşkirina parêzgehan kêm e

"Butçeya Herêma Kurdistan'ê li ser bingeha ji sedî 17 ji butçeya Îraq'ê ye. Ev rêje jî li ser bingeha jimara hevwelatiyên parêzgehan e."



Cewher Namiq

**Hewlêr -** Yekem Serokê Parlamena Kurdistan'ê Cewher Namiq ku derçûyê kolêja kargêrî û aborî ye, têbîniyên xwe derbarê projeya yasaya butçeya sala 2010'an di hevpeyvînekê de li gel Rûdaw'ê li ber çav radixe û bi baweriya wî ragehandina butçeyê di vê demê de bandorê liser sarbûna dengderên Kurd dike û nakokiyên navxweyî zêde dike di dema ku Kurdistan berê xwe dide hilbijartinên çarenûsî û pêwîstiya wê bi yekbûnê heye.

***Bi giştî, çi têbînîyên we liser xalên giştî yên ragehandina butçeyê ku ji aliyê Serokwezîrê Hikûmeta Kurdistan'ê ve hat ragehandin?***

Bi baweriya min ragehandina butçeyê ji aliyê serokayetiya Hikûmeta Herêma Kurdistan'ê ve di vê demê de ku aliyên siyasî bi kampîna hilbijartinên çarenûssaz ve mijul in û xelkê Kurdistan'ê li benda hilbijartineke aram, şefaf û azad in, divê hewldan bo komkirin û dehifdana dengderan bên kirin bo beşdarîkirinê di dengdanê de bikin lê ne bo sarkirina wan bin, herwiha diviyabû ev dem bihata terxankirin bo nehîştina xalên nakokî û girjiyê di navbera aliyan de, ne zêdekirina wan.

Dûyem, tevahiya pereyên butçeya 2010'an, 11.4 trîlyon dînar in, yanî nêzîka 10 milyar dolaran ku nêzîka 8 trîlyon dînaran, 6.8 milyar dolaran bo xerciyên berdewam hatine terxankirin û 3.4 trîlyon dînar jî bo hilberînê (nêzîka 3 milyar dolaran). Butçyeyeke ku zêdeyî ji sedî 70 ya wê ji meaş û xerciyên rojane re bin û kêmî ji sedî 30 bo hilberînê be butçeyeke seyr e û nûneratiya felsefeyeke hukraniyê ya seqet dike. Ji 3.4 trîlyon dînaran, 2.4 trîlyon dînar hatine pêşniyarkirin bo projeyên sala borî yanî zêdeyî dû liser sêya beşê hilberînê yê butçeyê û ya ku dimîne 1 trîlyon dînar in. 350 milyar dînar (300 milyon dolar) bo sandoqa niştecîkirinê, 150 milyar dînar bo dirustkirina xwendingehan.

Sêyem, berî ku butçe bigihe parlamenê Kurdistan'ê û bê gotûbêjkirin û pesendkirin û bibe yasa û serokê Herêma Kurdistan'ê pesend bike û bê belavkirin, hikûmet dest bi destkariyê di hinek beşên butçeyê kir ku bi rêya yasayê hatine danîn û bêguman her dibe bi yasayê jî desthilat bidin hikûmetê da ku bikaribe guherînan bike. Ev binpêkirina yasa ye û di vê demê de neku tenê derbaskirina parlamen, lê gurkirina xaleke hestyar e.

Çarem, di kampanya hilbijartinên 25.07.2009'an de berpirsên Lîsteya Kurdistanî gelek soz dan derbarê kêmkirina xerciyên bikaririnê û girîngdana bi hilberînê. Lê ger em butçeya sala 2009'an bidin ber butçeya îsal, bi liberçavgirtina vê yekê ku butçeya îsal nêzîka 3.1 trîlyon dînaran zêdetir e ji ya sala 2009'an û kutiya ya niha 835 milyon dînar in û ya berê 500 milyar dînar bû. Pêncem, wezîrê samanên sirûştî, gelek caran behsa nêzîka 6 milyar dolaran dikir wek destkefteke girêbestên gaz û petrolê û qaşo ev pere li hisabê Hikûmeta Herêma Kurdistan'ê li banqa HCB li bajarê Londra hatine danîn, kabîneya pêncem milyar dolar kişandiye û liser kabîneya dahatû ye 5 milyarên din bikişîne eynî wek ku wezîrê navbirî di rûniştineke Parlamenê Kurdistan'ê de tekezî liser kir. Ger hikûmet xwediyê van pereyan be êdî çima nakişîne û naxe warê hilberînê nemaze bo jêrxaneya aborî? Herwiha çima kurtî di butçeyê de hebe ger hikûmet xwediya 5 milyar dolarên razayî be? Dibe ku ev jî wek 18 milyon dolarên projeya santerala elektrîka Teqteq li cihekî êmin bin wek Londra!

***Hun çawa berê xwe didin ne diyarkirina beşekî diyar ji butçeyê bo hersê parêzgehên Herêma Kurdistan'ê di butçeya giştî de, gelo butçeya pêşxistina parêzgehan têrî wan dike?***

Butçeya Herêma Kurdistan'ê liser bingeha ji sedî 17 ji butçeya Îraq'ê ye. Ev rêje jî liser bingeha jimara hevwelatiyên parêzgehane. Bi gotineke din, butçeya Herêma Kurdistanê, butçeya parêzgehên Silêmanî, Hewlêr û Dihokê ye. Di xalên serekî yên beşê hilberînê yê butçeyê de ku di roja 19.01.2010'an de ji aliyê serokê hikûmetê ve hat ragehandin, beşê parêzgehên me tê de nehat diyarkirin. Herçiqasî wezîrê darayî û aborî roja 21.01.2010'an di rojnameya Kurdistan'ê Niwê de behsa vê pirsê kiriye û dibêje: "Pêşvebirina parêzgehan di nav butçeya hilberînê ye, cuda ye, sala borî 322 milyar dînar bûn, îsal hatiye kêmkirin û bûye 123 milyar dînar."

### Parlamenterê BDP´ê Şerafettin Halis:

# "Hewldana AKP'ê ji me re wek çirûskek bû!"



*Şerafettin Halis*

KAWE EMÎN

**Stockholm -** Roja 24´ên Çile´ya 2010´an de parlamenterê BDP´ê Şerafettin Halis ku nûnerê bajarê Dêrsim´ê ye, beşdarî Konferansa Dêrsim´ê bû. Konferansa Dêrsîm´ê li bajarê Stockholm'ê ji aliyê Navenda Kurdosayd-ÇAK ve hate sazkirin. Me ji bo xwendekarên Rûdaw´ê bi Şerafettin Halis re li ser siyaseta partiya BDP´ê û kongrêya wê ku wê di 1´ê Sibat´ê de bê lidarxistin, hevpeyvînek çê kir.

***Yekê Sibat'ê partiya we wê kongreya xwe li dar bixe, gelo wê ti guhertin pêk bên?***

Em guherînên berbiçav di siyaseta xwe ya giştî de nakin, lê em dixwazin hinek qadroyên nû û ciwan tevî partiya xwe bikin, herwiha li derveyî partiya me jî em hewldanan dikin ku xelkên ser bi neteweyên din wek Mesîhiyan û kesên din beşdariyê kongreyê bibin.

***Hinek qadro û berpirsyarên partiyên kurd ên qedexekirî hene ku niha ne di nava siyasetê dene. Hewldana we ji bo wan kesan heye ku di nava partiya we de kar bikin?***

Hemû kesê ku çarçove û peyrewa partiya me qebûl bike, bêguman hembêza me ji wan re vekiriye. Karê me yê serekî bi taybet pirsgirêka kurd û çareserkirina wê ye. Lewma li gel me, li ser vê pirsê û li ser demokratîkbûna Tirkiye'yê hevbîr be, em amade ne ku hemû hevkariyan li gel bikin.

***BDP çawa berê xwe dide pirsa vebûna demokratik li Tirkiye'yê, gelo hûn bi awayekî cuda ji DTP'ê reftarê li gel proseya navborî û AKP´ê dikin?***

Hewldana AKP ji me re wek çirûskek bû û me bi hêvî berê xwe didayê. Lê wek ku me dît wan hemû destên ku me ji bo aştiyê dirêj kiribûn kelepçe kirin û êrîşên xwe hem li hundirê Kurdistan'ê û hem jî li Tirkiye'yê domandin. Lewra me fam kir ku ew ne ji dil kar dikin û em bêhêvî bûn.

***Berî ku DTP bê daxistin, DTP herdem tekez dikir ku bê PKK´ê û Abdullah Öcalan pirsgirêk nayê çareserkirin?***

Li Tirkiye'yê û Bakûrê Kurdistan´ê sê milyon û 500 hezar îmza hatine komkirin ku rêzdar Öcalan wek nûnerê îradeya xwe qebûl dikin. Hêzeke bi vê mezinbûnê ku piştevaniya PKK´ê û Öcalan dike û em jî wek hêzeke fermî em naxwazin wî li derveyî çareserkirina pirsgirêka kurd bihêlin.

***Dewleta Tirk navê gelek bajar û gundên Kurdistan´ê kirine tirkî, Dêrsim jî yek ji van e. We li Parlamena Tirkiye'yê daxwaz kir ku navê wê ji Tunceli bibe Dêrsim, piştre hê gorên Seyid Reza û hevalên wî nehatine ditin, we çi kiriye di vî warî de?***

Piştî guherandina navê Dêrsim´ê di sala 1937´an de, cara yekem me li Parlamena Tirkiye'yê navê Dêrsim'ê bikar anî û me daxwaz kir ku navê wê yê rasteqîn lê vegerînin. Herwiha, wek parlamenterekî bajarê Dêrsim'ê min daxwaz kir ku gora Seyid Reza û hevalên wî bê eşkerekirin. Lê wan di bersiva xwe de gotin ku ew nizanin gorên wan li ku ne. Min ji wan re got 'we bi rêya dadgehên xwe ew darve kirine, nabe hûn bêjin hûn nizanin gorên wan li ku ne.' Mixabin wan ti bersiv nedan. Lê bê guman em dev ji van pirsan bernadin heta hertişt ron bibe.

***Li gor agahiyên me hûn ji xeynî karê siyasî, nivîskariyê û helbestvaniyê jî dikin. Hûn çawa dikarin cihana helbest û siyasetê bi hev re girê bidin?***

Bêguman zimanê siyaset û zimanê helbestê cuda ne, lê li gel vê yekê jî bawer dikin ku hem huner û hem jî siyaset bo gelekî bindest wek kurdan bi hev re girêdayî ne. Naveroka helbestên min hem evîn û hem têkoşîn e.

BAYRAM AYAZ

## Berfê zarokatiya min xiste bîra min!



Vê heftê min nedikarî biryara mijara nivîsa xwe bidim. Di nav du mijaran de diçûm û dihatim. Vê sibehê berfê ez rizgar kirim. Berfê zarokatiya min xiste bîra min.

Emê -di ber siyasetê de- bi demê berê de dakevin, zivistanên zarokatiyê li Kurdistan'ê bi bi hev re parve bikin.

Di rojevê de du mijarên girîng hebûn.

Yek ji wan, "serdana Serok Barzanî ya Amerîka'yê - cîh û wêneya kurdan di sistema cihanê de" bû. Emê vê mijarê binivîsin, girîng e.

Gelê kurd dikare bi serfirazî û bi serbilindî li pêşerojê binêre, ji xwe razî be, bi xwe bawer be. Helbet ne bi pozbilindî, lê belê bi dilnizimî û mutewazî. Planên ku di sedsala borî de bi armanca tunekirina kurdan hatibû danîn, têk çûn. Êdî kes nikare kurdan ji dîrokê hilke. Em hebûn, em hene, emê hebin. Miletê kurd êdî parçeyek ji sistema cîhanê ye. Planên stratejîk ser Rojhilata Navîn bê kurdan êdî nameşin. Ev yek dilê mirov rehet dike. Çavên pispor dikarin vê pêşerojê di wêneyên serdana Serok Barzanî de keşf bikin û ji gotinên wî têbigihîn.

Kesayetekî ku bikare kursiya kêleka serokên Amerika'yê (Bush û Obama) dagire, dikare hem rêberî û hem jî şivantiya welat û miletê xwe bike. Şêx Ebdilselam'ê nemir bi xebata bira û biraziyên xwe ji zû de sêdara waliyê Osmanî Silêman Nazîf hilweşand; dîrok êdî di coheke dî re diherike… Kurdistanî divê qedrê vê qonaxa em gîhane bizanin.

Mijara duyemîn partiya nû (BDP), operasyonên dijî şaredarên me û girîngiya parastina destkevtiyan bû.

Wekî me berê jî nivîsî bû, dijî sîstema statûkoperstan pêwist e em piştevaniya AKP'ê û hin projeyên hikûmetê bikin. Lê divê em bi ewqasî parastina destkeftiyên tevgera welatparêz jî bikin. Şaredarî destkevtiyên herî girîng in. Mewziyeke numro yek e. Parastina van destkevtiyan divê bibe refleksekî netewî.

Ji mafê kesê nîne şaredarên hilbijartî wek terorist sucdar bike. Wek mînakekî: min pê ne bawer e, ku girtina Şaredarê Sûr'ê Abdullah Demirbaş ji ber "terorîstiyê" be. Şaredarên AKP'yî bi çiqasî "terorist" in, Şaredarê Sûr'ê Abdullah jî bi ewqasî "terorist" e! Dewlet bila fen û fûtan negerîne. Hikûmet jî nebe alet. Ev operasyon hewldana pûçkirina desthilata welatperwerane di dezgehên herêmî de ye.

Mirov ne rehet e ku welatperwerekî wekî Abdullah Demirbaş bavêjin zindanê. Ew sala 2007 ji ber parastina ziman û çanda kurdî ji wezîfeyê hatibû girtin. Heft mehan piştî hilbijartina wî heman tişt dibe. Abdullah û kesên wekî wî ji bo helwestên wan ên kurdperwer dibin hedef. Kesê xwedî wijdan van leyistikên dewletê nikare qebûl bike, em jî nakin.

Derd û kûlên kurdewariyê nahêlin mirov bi ya dilê xwe ve dakeve, qala berfa zivistanên Kurdistan'ê bike.

Li xerîbiyê hesreta welat zêde ye. Vêca ku demên berê dikeve bîra mirov, yekser mirov teslîm digre. Vê sibehê dema rûniştim, binivîsim, wiha li min hat.

Li ber deryayekî rûnî, jiyan li pêş te şîn e. Bihar û havîn û payizan li Almanya'yê hawirdor kesk e. Jiyan kesk e. Dema derdor berf digre, wek îro, surişt bi kiraseke spî dixemile. Jiyan spî dibe. Hestiyarî, jiyana reng û dengên suriştê ye.

Berfê ez birim zivistanên salên şêstî, Licê, derê lê ji dayîk bûme.

Rojên berf zêde bihata, sibehê beroşa şorba nîska li ser agir bilqikan dida. Li ber nîskê sihana dimsê jî dadaniya. Nîsk û dimsê hundirê mirov germ dikir. Digot nava mirov xurt dike. Piştre berfa ser xanî dihat paqij kirin. Demê berf bihata, diçûn nêçîra kew û kevroşkan. Bastêx, meşlûl, gûz, behîv û eger hebûya metera dimsa germkirî me dixist tûrikê xwe û "qirme" hildida, derdiketin nêçîrê.

Min vê sibehê şorba nîska pat, dims jî hebû. Bastêx û meşlûl û gûz û behivên ji welat rêkiribû, hemî li ber min bû. Tûrik jî hebû. Lê demê nêçîr kete bîra min, min dît ya herî girîng ji min kêm e: WELAT, KURDİSTAN.

# Zozanên Kurdistan'ê hîn jî qedexe ne!

**Wan (Rûdaw) –** Li bajarên Bakurê Kurdistan'ê Wan, Agirî, Qers, Bedlîs, Mûş, Îdir, Colemêrg û Erzirom'ê 44 noqteyên lêgerînê û 51 zozanên qedexekirî hene. Nûnerên rêxistinên civakî yên sivîl diyar kirin ku hê jî li Kurdistan'ê pêkanînên rewşa awarte (OHAL) didomin.

Wezîrê Karê Hundir Beşir Atalay, bi boneya maf û azadiya kesan binpê nebe, derbarê kontrolkirina rê û qedexeyên zozanan ji walîtiyên Kurdistan'ê re du giştîname şandin. Di giştînameyan de hate diyarkirin ku bi taybetî pêkanînên li Kurdistan'ê gumanê peyda dikin ku maf û azadiya kesan zirarê bibîne.

Serokê Odeya Esnaf û Zenaatkaran a Gewer'ê, Îrfan Sarı diyar kir ku li Kurdistan'ê pêkanînên dema OHAL'ê bi fiîlî ti car ranebûye. Sarı da zanîn ku li ser hemû rêyên tên navçeya Gewer'ê noqteyên lêgerînê ya polîs û leşkerî heye. Sarı destnîşan kir ku rêwiyên ji navenda navçeyê diçin heta nexweşxaneya dewletê rastî pêkanînên kontrola nasnameyê tên. Sarı anî ziman ku hin noqteyên lêgerînê ji bo rêwiyan bûye işkence û wiha got: "Di lêgerînan de mirovan ji wesayîtan derdixin û li ser wan digerin. Wesayîtan bi tornavîdeyan vedikin û şîşê dixin depoya wesayîtan. Ev yek binpêkirina herî mezin e."



*Hesp li Kurdistan'ê hîn jî aletekî veguhestinê yê giring e.*

Serokê Baroya Colemêrg'ê İsmîl Durgun jî pêkanînên di noqteyên lêgerînan rexne kir û diyar kir ku ev pêkanîn rê li ber binpêkirina mafan vedike. Durgun anî ziman ku armanca noqteyên lêgerînê girtina sûcdar û madeyên esrarê ye. Durgun da zanîn ku di vê mijarê de ti serkeftin pêk nehatiye û wiha got: "Ev rastî di îstastîkan de jî derdikeve holê. Bi vê pêkanînê azadiya seyranê ya di makezagonê de jî tê îfadekirin, tê binpêkirin. Divê ev pêkanîn di zûtirîn demê de bi dawî bên." Serokê Odeya Bazirganî û Pîşesazî ya Gewer'ê Sabih Kayan jî da zanîn ku ev pêkanînên li noqteyên lêgerîn û qedexeyên zozanan dide nîşandan ku hê jî mejiyê OHAL'ê didome. Kayan anî ziman ku dewlet bi vê yekê kurdan û pirsgirêka kurd wekî pirsgirêka asayîşê dibîne û derbirî ku pêkanînên di noqteyên lêgerînan berhema polîtîqayên hilweşandin, bêzarkirin û tepisandinê ye û got: "OHAL ji bo me hêj didome. Ev pêkanîn rûmeta mirovan dişkînin û binpêkirina mafan e."

# Li Îran'ê 114 zarok li benda sezaya îdamê ne




*Zarok û mêrmindalên di jêr 18 salan li navendên çaksazî û perwedeyê tên bi cih kirin heta ku dibin 18 sal û piştre têne darvekirin.*

SABİR QADİRÎ

**Rûdaw -** Di rapora xwe ya dawî de Rêxistina Lêborînê ya Navnetewî "AI", Komara Îslamî ya Îran'ê wek "Kujera Zarokan" bi nav dike. Li gor rapora AI, di 10 salên borî de 24 mêrmindal (zarokên di navbera 16 û 18 salan) hatine darvekirin. Bi vî awayî Îran di rêza yekem a welatên ku zarokan îdam dike de ye.

Li gor lêkolînek rêxistina mafên mirovan li Îran'ê niha 114 mêrmindal bi sezaya darvekirinê hatine mehkumkirin. Ehmed Hesenzade yê 17 salî li zindana bajarê Sine hat darvekirin. Muslih Zeman jî ku di heman temenî de bû li zindana Dîzil Abad a ser bi parêzgeha Kirmaşan'ê, hat îdamkirin. Muslih bi tewanbariya ku peywendiyên wî yên cinsî li gel keçeke, hatibû girtin. Herçiqasî binemala keçikê bi awayekî nivîskî razîbûna xwe li ser azadkirina Muslih pêşan dabûn jî, lê dozger got divê Muslih bê darvekirin da ku ev yek bibe ibretek bo kesên wek Muslih.

Berpirsê Navenda Zarokan li Parêzgeha Kurdistan'ê (Nêrgiz), Fatih Salihî dibêje wan hewldanên zêde kirine da ku ew mêrmindal neyên îdamkirin, nemaze bi rêya agahdarkirina navendên navnetewî yên mafên zarokan, lê dezgeha dadweriya Îran'ê bersiva ti aliyan nedaye.

Mafperwer û parêzer darvekirina mêrmindalan bi bingehên yasaya Komara Îslamî ve girê didin. Parêzer Xelîl Behramyan tevlîhevbûna Şerîatê û yasayê wek sedemê darvekirina zarok li Îran'ê dibîne û dibêje: "Li gor madeya 1210'an ji yasaya sivîl, temenê yasayî yê cîbicîkirina sezayê bo kuran 15 sal in û bo keçan jî 9 sal in, lewre rê li pêşiya sezadana zarok û mêrmindalên li jêr temenê 18 salan, vedibe."

Madeya 37'an ji peymana mafên zarokan ku Îran'ê jî îmze kiriye, darvekirina zarokên jêr 18 salan qedexe kiriye. Ji ber guşarên navendên parastina mafên mirov û zarokan niha zarok nayên îdamkirin. Heta temenê wan dibe 18 sal li navendên çaksazî û perwerdeyê dimînin û piştre tên darvekirin.

Li gor raportekê ku ji aliyê rojnamevan û çalakvana mafên jin û zarokan Asya Emînî hatiye amadekirin, di navbera 1999 û 2008'an bi eşkere 41 bûyerên darvekirina mêrmindalên jêr temenê 18 salan hatine cîbicîkirin. Herwiha par 107 mêrmindal li Îran'ê bi sezaya darvekirinê hatin mehkumkirin. Di meha yekem a îsal de jî 7 zarokên din jî bi heman seza hatin mehkumkirin, yanî niha 114 mêrmindal li Îran'ê li benda îdamê ne, par jî 5 mêrmindal hatin darvekirin.

Binemala Muslih Zeman sedemên îdamkirina kurê wan bi evîndariyê ve girê dan. Mirad'ê birayê Muslih wiha got: "Guneha birayê min tenê ew bû ku kêfa wî ji keçekê re dihat. Li ti deverên vê dinyayê min nebihîstiye ku mirovek bi guneha evînê bê îdamkirin."

# KurdWatch mafên kurdan li Sûriye'yê dişopîne

**Berlîn (Rûdaw) -** Mafên mirovan li Sûriye'yê herdem di rojevê de ye. Care yekem malperek bi navê 'KurdWatch' (www. kurdwatch.org) agahiyên di derbarê binpêkirinên mafên mirovan li hemberî gelê kurd li Sûriye'yê, li ser rewşa girtiyên siyasî û jiyana rojane bi çar zimanan (kurdî, ingilîzî, almanî û erebî.) diweşîne. KurdWatch projeyeke Navenda Ewrûpî ji bo Lêkolînên Kurdî li Berlîn'ê ye û bi rêxistinên weke Amnesty International, Human Rights Watch, Pro Asyl û dezgehên penaberan re kar dike. Berpirsyare malpera 'KurdWatch' Siamend Hajo bersiva pirsên Rûdaw'ê dan.



*Siamend Hajo* *(Wêne: Rûdaw)*

***Armanca malpêra KurdWatch çi ye?***

KurdWatch' malpereke serbixwe ye û armanca me ew e ku em agahiyên rasteqîne biweşînin, ku ji aliyê çavkaniyên cuda ve hatibin piştrastkirin. Bi vî şêweyî em dixwazin valahiyên zanyarî û lêkolînan li ser rewşa gelê kurd li Sûriyê dagirin û piştgirtina xebata rêxistinên mafên mirovan, lêkolîner, siyasetvan û rojnamevanan, dadgeh û dezgehên din bikin.

***Wê ji bo çi pêwist dit ku hûn malpereke bi wi rengî vekin?***

KurdWatch yekemîn malper e ku bi şêweyekî cidî agahiyên lêkolînkirî li ser rewşa mafên mirovan li Sûriyê diweşîne. Ta niha di vî warî de kêmasiyeke berbiçav heye. Çalakvanên kurd ji Sûriye'yê berdewam daxuyaniyên li ser rewşa mafên mirovan diweşînin. Lê pirsgirêk ew e ku ew gelek caran meseleyan mezin dikin – wek mînak ew difikirin ku çiqasî ew zêde behsa girtinan bikin, wê xelk bêtir hay ji wan hebe. Lê ev çewt e. Da ku mirov ji aliyê dezgehên navneteweyî, dadgeh û dezgehên biyaniyan, rojnamevan û siyasetvan ve cidî bê girtin, divê mirov bêtir behsa rastiyan bike. Ev rastî têra xwe bisaw in. Herwiha pirraniya malperên kurdî bi kurdî û erebî ne. Bi vî şêweyî mirov xwe nagihîne raya giştî ya Ewrûpî.

***Mirina leşkerên kurd hûn çawa dinirxînin?***

Em niha li ser mirina leşkerên kurd di nav artêşa Sûriye'yê de lêkolînan pêk tînin. Wek pêşencamek em dikarin bêjin ku hejmareke ne kêm ji dozên mirinê dikevin çarçoveya bûyerên xwekuştinê. Di dozên din de mirin ji ber çewisandina ji aliyê berpirsan ve pêk hatine. Dibe ku van berpirsan ta radeyekê ji ber hestên li dijî kurdan ev kiryar kiribin. Berevajî ku gelek caran tê gotin, ne xuya ye ku kampanyayeke dewletê li dijî leşkerên kurd heye. Eger lêkolînên me bi dawî hatin, wê KurdWatch behsa vê mijarê bike.

MUSTAFA ŞEFÎQ EDILBÎ

## Barzanî rêya çareserîyê dişopîne

Yek ji astengên herî mezin li pêşiya tevgera kurd îzolebûna vê tevgerê ji qada navnetewî ye. Di sedsala 20'an de Kurdistan di hemû warên siyasî, dîplomasî, ragihandin û heta di warê kultûrî û civakî de jî ji pêşveçûnên cîhanê hatibû qutkirin. Guman jî nîne ku vê yekê bandoreke rasterast li ser pêşveçûna tevgera azadîxwaz a gelê kurd kir.

Ev rewş bû sedem ku tevgera azadîxwaz li Kurdistan'ê gelekî hêdî pêşve biçe û di qada navnetewî de jî gelekî çewt bê naskirin. Lê ev rewş wiha ji ber xwe ve çê nebû. Ji aliyekî ve sîstemên dagirkerên Kurdistan'ê bi hemû rêyên siyasî, leşkerî, aborî û dadperwerî kar dikirin bo ku Kurdistan û gelê wê ji hemû pêşveçûnên cîhana hemdem dûr bigirin. Ji aliyê din ve jî bi hevkariyeke pirr xurt bi sîstema cîhanî a dema şerê sar di warê dîplomasî de kar kirin ji bo ku tevgera kurd di qada navnetewî de cih negire. Berjewendiyên navnetewî yên serdema şerê sar jî bi temamî li dijî berjewendiyên xelkê kurd bûn û piştevaneke xurt bû ji sîstema dagîrker li ser Kurdistan'ê.

Li hemberî vê rewşê tekoşîna gelê kurd ne hindik bû, fêdekarî û berxwedanek pirr jî hate dayîn lê encam pirr nehate guhertin. Dagirkerî hîn ku diçû, lingên xwe li ser xaka Kurdistan'ê dişidand, derd û êşên gelê kurd jî hîn ku diçû zêde dibûn, komkujî hîn zêdetir bûn û ji derveyî çekên atomî ti rengên çekan neman ku li hemberî gelê kurd nehatin bikar anîn. Helepce mînaka herî dawî bû di vî warî de. Gelekî ku ji bona azadiya xwe bi milyonan qurbaniyan dide û hêj li ser berxwedanê her berdewam be, kes nikare bêje vî gelî xebat nekir, an jî teslîm bû û xwe da dest dijminan.

Lê pirs eve: ji ber çi van hemû qurbanî û xwîna gelê kurd encama tê xwestin neanî? Em hemû dizanîn ku di sala 1988'an de rejîma Saddam Hûseyn li Helepce çekên kîmyawî bikaranîn, lê qet wîjdana hêzên navnetewî nebizivî, qet cîhan lê xwedî derneket. Sedem jî tenê ew bû ku di qada navnetewî de hebûna tevgera kurd nebû, çembera li dora kurdan hêj girtî bû.

Karkirina ji bona derketina ji vê çemberê û vebûna di qada navnetewî de mercek ji mercên serkeftin an jî pêşveçûna tevgera Kurdistan'ê ye. Li gor rewşa îro ya cîhanê û mercên navnetewî, fedekarî, qurbanîdan û berxwedan çend mezin dibe bila bibe, bêyî piştevaniyeke xurt di qada navnetewî de serkeftina tevgera kurd zehmet e. Başûrê Kurdistan heya asteke baş kariye gavan bavêje û dikare bibe mînakek pêşeng ji bo xebata gelê kurd li parçên din, bi taybetî ji bo Bakûrê kurdistan'ê. Ev rastiyeke ku nayê înkar kirin. Sedemekî mezin ku îro pirsa çareseriyê li Bakûrê Kurdistan'ê ketiye bin bestê û di proseya çareseriyê de zêde însyatîf di dest dewleta tirk de di mîne, hejarbûna tevgera kurd li Bakûrê Kurdistan'ê di qada navnetewî de ye.

Ew tengasî û zoriyên ku tevgera kurd li Başûrê Kurdistan'ê di sala 1988'an de pê re rû bi rû ma, eger ne bi vî awahî jî be lê di qada navnetewî de Bakûrê Kurdistan di heman tengasî de derbas dibe. Giringe di vî warî de ji tecrûbeyên dîplomasî yên Başûrê Kurdistan'ê feyde werê girtin. Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî û Serokkomarê İraq'a Federal Mam Celal di vî warî de mînakên pirr giring in. Herdu serokan jî weke pêşmerge heya salên 1990'an li çiyan di qada çekdarî de xebat kirin û paşî van salan li gora rewşa nû a navnetewî karîn bi lez di qada navnetewî de weke dîplomatên bibandor gavan bavêjin. Rastiyeke ku em hemû dibînin, gelek pirsên helpesartî yên di navbera Kurdistan û Baxda'yê êdî ne li Baxda, belkî li Washington, li Brussel tên gengeşe û çareserkirin.

Ji bo çareseriya pirsa kurd, ev çendîn care ku Serok Barzanî serdanên giring ji bo welatên rojava, nexasim Amerîka û welatên Yekîtiya Ewrûpa pêk tîne. Herweha ji bona Îran û welatên Kendava Erebî jî serdanên dîplomasî giring in û roleke wan a giring li ser desthilatdarên Baxda û peşdabirina proseya demokratik li heremê hene. Rola Serok Barzanî di vî warî de weke klîta çareseriyê ye û ji bo tevaya pirsa kurd giringiyek wî ya mezin heye û divê di nava tevgera kurd li her perçê Kurdistan'ê piştevanî jêre werê kirin.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de **Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81 **Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

## Gültan Kışanak:
# Dewleta tirk dev ji vê siyasetê bernade

***Piştî girtina DTP'ê siyaseta kurd careke din li bin baniya BDP'ê gihişt hev. BDP di çareserkirina pirsgirêka kurd de wê ji DTP´ê cudatir rol û siyasetek cuda bikaribe bilîze?***

DTP li ser gerdîşekî hatibu damezrandin. Esasê vê kevneşopiyê ji salên 90´an vir ve garantiya azadî û mafên demokratîk yên kurd bi riya siyaseta demokratîk e. DTP jî him ji bo demokratîkbûna Tirkiye'yê û him jî çareserkirina pirsgirêka kurd bi awayekî demokratîk ji xwe wek prensîb hebandibû. Mixabin, wek partiyên din nehat ji alî dewletê ve nehat qebûlkirin û hat girtin. Sek BDP daxwaza me ew e ku qanaleke demokratîk vekirî bimîne. Ji bo vê yekê, sedemê hebuna me, erka me ya esasî, hincetên tekoşîna me û nêrîna li pirsgirêk û çareserkirina wan de wek hev e, cudahiyek di navbera me de tuneye. Me dixwest ku DTP nehata girtin, siyaseta demokratîk ya kurdan neyê astengkirin. Di dawiya pevajoyek wisa de em di bin avahiya BDP'ê de riya xwe berdewamdikin. Lê belê ji ber polîtîka me ya esasî, divê ku gel nekeve bendewariyeekî cuda. Li Tirkiye'yê pirsgirêk nehatiye guhertin û nezîkayiya dewletê jî li hember wan pirgirêka nehatiye guhertin. Tiştek nehatiye guhertin ku argûmanê siyaseta me jî bê guhertin. Bi vê hebun û erkê emê xebatên xwe bidomînin.

***Bi taybetî di vê pêvajoyê de ku zextên dewletê li ser we didome, BDP di qada siyasetê de wê bêhneki çawa be, vê çi karibê biguherînê?***

Bingeha tekoşîna demokratîk ev e; îdîaya guhertinê, ked û hewldan û tespîtkirina armancekî rast. Eger ku me di riyek wisa de dest bi siyasetê kiribe, dîtina pirsgirêka welat wekî pirsgirêka xwe bibîne û eger ku ji bo çareserkirina wan pirsgirêkan em di nava hewldanekî û xwedî kedekî bin û ji bo vê yekê me ji gel baweriyek wisa girtibe, çi bikeve ser milê me emê bikin. Bi taybetî jî em vê angaşta xwe bi awayekî xurt diparêzin. Emê zor bidin demokratîkbûna Tirkiye'yê ku ev welat têkeve riya çareseriyê. Tistên ku partiyên siyasî karibin bikin diyar e. Yek ji wan jî awakirina gotinên pozîtîf in. Em wekî BDP van gotinên polîtîk û pêşniyarên çareserkirinê bi awayekî eşkere tînin ziman. Argumentên polîtîk divê ku ji aliyê gel ve û ji aliyê hêzên demokratîk yên Tirkiye'yê ve bên qebûlkirin û li gor vê polîtîkayê emê zorê bidin dewletê ku guhertinan çebike. Dû esasên partiyên siyasî hene; yek ji wan rast avakirina argumentên siyasî, ya din jî divê ku li paş wan gotinan piştgiriyek mezin ya gel hebe. Tiştek heye ku herkes dibeje; 'heta pirsgirêka kurd çareser nebe, Tirkiye nabe welatekî demokratîk. Heta ku Tirkiye welatekî nebe demokratîk, pirsgirêka kurd nayê çareserkirin.' Hewcedariyek hevbandorî beramberî hev heye.

***Armanca dewletê bi qedexekirina DTP'ê, girtina şaredar, rêvebir û endamên BDP'ê çibû?***

Di darbeya leşkerî ya 12´ê Îlonê vir ve li ser gelê kurd terorekî mezin hat meşandin. Polîtîkaya tasfiyekirinê kete dewrê. Di salên 90´î de jî li dijî tekoşîna rizgariya gelê kurd ev polîtîka gihişt astekî hovane. Digel vê yekê gelê kurd dest ji daxwaza azadiya xwe, mafên xwe berneda. Yê herî dawî di hilbijartina 29´ê Adar´ê de derket hole. Dewlet ji netîceya hilbijartinê tirsiya. Di hilbijatinê de hemû partiyên din wek partiya dewletê bi hevre xebitîn, lê encam negirtin. Dewlet û hikûmeta AKP'ê li ser kurdan konseptekî xistin devrê û heta dawiya havînê jî berdewam kirin. Ev konsept mûdaxaleya îradeya gel e, ev konsept darbeyekî siyasî ye. Hikûmeta AKP'ê wê ji vê yekê zirarên mezin bibîne. Wê dawî li jiyana xwe ya siyasî bîne. Tu kes nikarê li hemberî çareserkirinê bisekine. Siyaseta înkar û îmhayê êdî îflas kiriye.



Gültan Kışanak (Wêne: Diha)

***AKP xwe wek berpirsê wan girtin û zextan nabîne. Rola AKP'ê di van bûyeran de çiye? AKP erkeki çawa daye ser milê xwe?***

Ev operasyon û ragirtin bi îcazet û teşvîka hikûmeta AKP´ê pêk hatiye. Tu kes, bê agahiya hikûmet û wezîrên karê hundir nikare nîvê şevê şaredaran û rêvebirên partiyekî legal bigire. Li gor agahiyên me, erîşên ku ji aliyê dewletê li ser gelê kurd tê meşandin, bi pevajoya îro ve tê girêdan. Derdorê hikûmetê jî wisa dinirxînin, car caran jî vê yekê eşkere dibêjin. Pevajo li gor xwesteka dewletê nemeşiya ye, ji bo vê yekê dewletê mûdaxele kiriye.Bi rastî hikûmet hevalên me rehîn girtiye. Di dema hikûmeta AKP´ê de gelek kes ji alî polîs ve di xwepêşandanan de hatine kuştin. Di destê AKP´ê de xwîna gelê kurd heye.

***Eger dewleta tirk di vê siyaseta xwe de israr bike, vê pêvajoyek çawa dest pê bike, ve helwesta BDP´ê li hember vê politika çi be?***

Ez bawer nakim ku dewleta tirk dev ji vê siyasetê berde. Ji ber ku ev polîtîka di heman demê de polîtîkaya AKP´ê ye jî. Tirkiye niha ketiye atmosfera hilbijartinê. Di zivistan an jî di bahara sala pêşî de dive ku hilbijartin çebibe. Li ber hikûmeta AKP´ê wextek zêde nema ye. Vê xwe li gora hilbijartinê eyar bike. Ji bo vê yekê dixwaze rêxistina kurdan belav bike, nehêle ku jiyana xwe bidomînin. Armanca wan hemû li ser hilbijartinê ye. Emê li hember wan polîtîkayan bi baweriyek mezin derkevin holê. Dewlet yek rêxistina me belav bike, emê yeka nû damezirînin.

***Li ser kongreya BDP´ê hun çi difikirin?***

BDP ne partiyeke bijarteya ye, partiyeke demokratîk e. Hêza xwe ji gel distîne. Bi gel re siyaseta demokratîk dimeşîne. Ji bo vê yeke kongreyên me pêşbaziyên pêşengiyê ne. Amadekariya ji bo pevajoyekî nû ye. Çi mesûliyet bikeve ser mile me, emê wê bicîh bînin. Baweriya me heye. Emê layiqê gelê xwe bin. Gelê kurd çi kar deynê pêşiya me, emê di vê riyê de bimeşin.

# Çalakvanên Rojhilatê Kurdistan'ê tevlî "Tevgera Kesk" dibin




SABÎR QADÎRÎ

**Taybet -** Çalakvanên kurdên Rojhilatê Kurdistan'ê çend daxwaznameyek pêşkêşî Tevgera Kesk a Îran'ê dikin bo tevî wê bibin, serkirdayetiya Tevgera Kesk jî piştîvaniya van daxwaziyan dike.

Piştî gera dehan a hilbijartinên serokkomariya Îran'ê û ragehandina encamên wê, alîgirên Mehdî Kerûbî û Mîr Husên Mûsewî daxwaz kirin encamên hilbijartinan bên betalkirin jiber li gor wan sextekariyên zêde li berjewendiya Mehmûd Ehmedînijad hatine kirin. Piştî ku ev daxwazî pêk nehat, şepola ne razîbûna alîgirên Mûsewî û Kerûbî ku niha wek Tevgera Kesk tê naskirin, piraniya bajarên Îran'ê da berxwe. Li gor hinek çavkaniyan jî, ji meha yekem a van xwepêşandanan û heta niha nêzîka 100 kesan hatin kuştin û sedan kes jî hatin destgîrkirin.

Heta niha neteweyên ne faris û nemaze jî kurd tevî van tevgerên ne razîbûnê nebûne. Lê jimareke çalakvanên sivîl ên Rojhilatê Kurdistan'ê çend daxwaziyek pêşkêş kirine bo beşdarîkirinê di Tevgera Kesk de.

Çalakvana warê mafên jinan Rûya Tilûî giştînebûna dirûşmên Tevgera Kesk bi beşdarnebûna neteweyên ne fars ve girê dide û wiha dibêje: "Ger neteweyên ne fars xwe di dirûşmên Tevgera Kesk de bibînin, wê ev tevger bibe tevgereke giştî û wê xelkên ne Fars jî tevî wê bibin."

Çalakvanên sivîl daxwiyaniyeke ji 9 xalan belav kirine û daxwaz dikin ev xal bibin dirûşmên tevgerê: Ji nûh ve nivîsandina yasaya bingehîn ya Îran'ê, cîbicîkirina beyannameya cîhanî ya mafên mirovan, hilbijartina berpirsan ji aliyê xelkê ve û bi awayekî yekser, naskirina mafên siyasî, neteweyî, kultûrî û zimanî yên neteweyên ne Fars, wekheviya regezî (di navbera mê û nêr de), hilbijartinên azad, azadiya ra û nerînê û azadiya hilbijartina olê, nehiştina sezaya darvekirinê. Azadiya zindaniyên siyasî û dabeşkirina desthilatê di nav pêkhateyên Îran'ê de.

Çavkaniyeke nêzîk ji Husên Mehdî Kerûbî û berpirs ji Hizba Îtîmada Millî, derbarê helwêsta wan beramber daxwaziyên çalakvanên Kurd di hevpeyvînekê de bo Rûdaw'ê got: "Ev xal berê di dema hilbijartinan de di hundirê paltformekê de ji aliyê Mehdî Kerûbî ve hatine behskirin. Hêz û çalakvanên navxwe yê Îran'ê roleke dilîzin di çareserkirina aloziyên niha li Îran'ê." Lê piraniya çalakvanên ku ev beyanname îmze kirine li dervey Îran'ê dijîn.

Ji aliyekî din ve jî jimareke ji kesatiyên ku li dervey Îran'ê dijîn û zimanê wan farsî ye û xwe wek serkirdayetiya beşekî ji Tevgera Kesk didin naskirin, û piştîvaniya daxwaziyên van çalakvanan dikin.

Beşek ji hizbên Rojhilatê Kurdistan'ê ku berê aloziyên li hindirê Îran'ê wek hevrikiya navbera dû baskên Komara Îslamî ya Îran'ê didan naskirin jî, niha xwendineke nû li tevgera Kesk dikin. Sekreterê Hizba Demokrata Kurdistana Îran'ê Mistefa Hicrî di gotarekê de ku Tish-Tv belavkir, nerîna hizba xwe derbarê bizava kesk de ron kir û wiha got: "Ev rastî eşkeretir bû ku pêkhateya vê opozisyonê, ji hêzên ku dijî hikûmeta olî ne, pêk tê." Hicrî di beşekê din ê gotara xwe de got divê bizava kesk jimareke zêdetir ji xelkên Îran'ê bo nav refên xwe bikişîne û domand: "Bê guman yek ji erkên bizava Kesk rakişandina jimareke zêde ya texên cuda yên xelkê ye."

# Hindistan li Hewler'ê konsolxane vedike

**Hewlêr –** Dewleta Hindîstan'ê li Hewler'ê konsolxaneyekî vedike. Naz Felekeddîn Kakeyî di seredana xwe ya bo Hindistan'ê de li gel berpirsên Hikûmeta Hindistan'ê civiya, lê jiber mijûlbûna wan bi hilbijartinên parlamenê ve, derfeta hevdîtinên berfireh bi destê Naz`ê neketiye. Lê Naz ragehand ku ew li gel Rawêjkarê Wezîrê Derve yê Hindistan'ê civiyaye û jê re gotiye ku gelo wê Hindistan li Hewlêr'ê konsoloxaneyekê veke: "Ji min re got dibe ku piştî saleke din nivîsîngeheke fermî ser bi konsolxaneya Hindistan'ê li Bexda li bajarê Hewlêr'ê vekin."

# "Keçik bi rêzefîlmên tirkî tên pişaftin..."



*Mîrza Ronî* *(Wêne: Rûdaw)*

**Cizîr (Rûdaw) -** Komeleya Pêşvebirin û Lêkolîna Zimanê Kurdî (Kurdî-Der) li Bakurê Kurdistan'ê hêz da xebatên xwe. Komelê li gelek bajarên wekî Wan, Gever, Tetwan, Êlih, Farqîn, Nisêbîn, Cizîr û Îzmîr'ê şaxên xwe vekirin. Niha çav li rê ye ku li navçe û bajarên wekî Çewlik, Dêrsim, Riha, Şirnex, Mêrsîn û Silopi'yê jî şax vebin.

Kurdî-Der a Cizîr'ê jî bi armanca ku xwedî li mîrateya Celadet Bedirxan û Kovara Hawar'ê derkeve, ev demek e di nav xebatan de ye. Li gorî planê wê di 21'ê Adar'ê de kovareke bi navê 'Birca Belek' jî derkeve. Di derbarê rewşa zimanê kurdî û gelek pirsên din de rêvebirê Kurdî-Der a Cizîr'ê Mîrza Ronî ji Rûdaw'ê re axifî.

Ronî diyar kir ku armanca wan ji vê komeleyê ev e ku ew bikaribin di nava gel de hişmendiyeka zimanê kurdî peyda bikin û di bin banê komelê de kursan bidin zarok, ciwan û her kesê ku bixwaze xwe hînî zimanê kurdî bike.

**Xwendin û nivîsandina kurdî pirr kêm e**

Di berdewamiya axaftina xwe de Ronî dide zanîn ku nexasim ku yek di hêla xebatên zimanê kurdî de xebatan bimeşîne, pirsgirêk zêdetir dibin û astengî dikevin pêşiya mirov: "Îro em xebata xwe di bin banê Kurdî-Der de dimeşînin û wek ku tê zanîn ev ziman bi salan e xwe ji çerxa pişaftinê xilas nekiriye. Heya îro jî ev pişaftin ji holê ranebûye li Tirkiye'yê. Wekî din dîsa em dikarin bibêjin her çiqas îro axaftina kurdî zêde ye jî, lê mixabin ev di hêla xwendin û nivîsandinê de ne wiha ye. Ango xwendin û nivîsandina bi vî zimanî pirr kêm e, di hêla standardkirina zimanê yekgirtî de dîsa car caran kêmasî û pirsgirêk derdikevin. Di hêla astengiya de jî herçiqas em di çarçoveya destûrnameya komelan de xebatên xwe dimeşînin jî, lê car caran astêngiyên qanûnî derdikevin pêşberî me. Ji ber ku hêj pêşiya zimanê kurdî nehatiye vekirin û di makeqanûna tirkî de mafê perwerdedayîna bi zimanê kurdî an jî zimanekî din nehatiye qebûlkirin. Ji wê çendê tenê di nav komelê de em dikarin xebatên li ser ziman bimeşînin, wekî din em nikarin azad xebatê xwe bidin meşandin..."

Li ser rewşa niha ya zimanê kurdî li Bakurê Kurdistan, Mîrza Ronî dixwaze di sê xalan de ji me re vebêje: "Di hêla nav gel de îro rêxistina zimanê kurdî TZP-Kurdî xebatên xwe dimeşîne; Kurdî-Der di nava gel de hişmendî û perwerdehiya zimanê kurdî bi awayek rêk û pêk dimeşîne. Lê di hêla xwedîlêderketina li zimanê kurdî, ev yek di nav gel de kêm e. Îro li gelek heremên me êdî tirkî serdest bûyê û axaftina li nav sûkan bûye tirkî. Mixabin li bajarekî wek Amed'ê kêm kes kurdî diaxifin..."

Li ser rewş li bajarên din, Ronî behs dike ku li heremên wek Botan û Serhed'ê kurdî serdest e: "Ango li bajarên mezin ên kurdan axaftina bi kurdî ji sedî 40 be, li bajarên wek Colemêrg, Sêrt û Şirnex'ê axaftin ji sedî 90 bi kurdî ye. Li ser nêzîkbûna dewletê bo zimanê kurdî, Ronî dide zanîn "ku eger îro em bêjin 25 milyon kurd li Tirkiye'yê dijîn û hêjî zimanê wan nebûye zimanê perwerdeyê, ev tenê nêzîkbûna dewletê dide der."

**Keçik ji lawan bêtir bi tirkî diaxifin**

Em mereq dikin ka bi taybetî ciwanên Cizîr'ê çawa nêzîkî çand û zimanê kurdî dibin, Mîrza Ronî dibêje ku mixabin ciwan ji ziman û çanda xwe dûr dikevin: "Ev pirsgirêkek gelekî mezin e. Di vî warî de divê projeyên ku berê ciwana bidê çand û zimanê wan pêk bên. Îro li Cizîr'e rewşa ciwanan di warê nêzikahiya wan bo çanda kurdî gelekî qels e, giringiyê nadin çanda xwe. Ji ber bandora çanda serdest, dikevin nav çerxa pişaftinê û popûlîst tevdigerin. Li komela me serîlêdanên ji bo perwerda zimanê kurdî jî kêm tên kirin. Bi taybetî jî keçik di malan de bi rêzefîlmên tirkî tên pişaftin; di jêr bandora filmên popûlîst de dimînin û ev jî derûniya wan li pêşberî çand û zimanê wan dûr digire. Keçik ji lawan bêhtir di navbera xwe de tirkî diaxifin, ev jî dibê sedem ku ji çanda xwe dûr bikevin..."

Paşê gilî û gazinc ji xemsariya siyasetê dike ku guh nadin zimanê kurdî: "Ew giringiyê nadin perwerdeya bi kurdî, di vir de divê her siyasermedarê me hişmendiya ziman di nav gel de belav bike û çi civîn û axaftinên di nav gel de bên kirin, divê bi kurdî bin û ji îro û şûnde jî pedivî pê heye ku perwerdên xebatan tev bi kurdî bên dayîn..."



## Têkoşîna Azadiya gelê Naviyan/Avatar

XAYYAM RÎZGAR CELLÎKANÎ

Rojek ji rojên zivistanê û roja şemiyê ye. Rojek aram heyamek sernerm e. Emê çi bikin? Di nava min, hevser û zarokên min de gengeşînek tûnd derket. Sê vebijêrk derketin. Emê an biçûyana fîlmê Yilmaz Erdoğan ê bi navê 'neşeli hayat'an biçûyana fîlmê Cem Yilmaz ê bi navê 'Yahşi Bati' an jî biçûyana fîlmê James Cameron ê bi navê 'Avatar'. Min di berdewamiya gengeşiyan de wek xwediyê malê bi biryara xwe ya misoger dawî li niqaşê anî: Emê herin 'Avatar' ê!

Avatar filmekî nû û taze li sînemayên cîhanê li nimandinê ye. Fîlm hê ji niha de hema hema rekortên hemû katan şikand. Ewqas hat temaşe kirin ku pisporên sînemayê dihizirin ku wê rekorta fîlmê 'Titanic' jî bişkîne. Bi rastî jî min nedizanî ku derhênêrê fîlmê Titanic jî James Cameron e. Bi xêra Avatar ez hînî navê derhênêrê bi navûdeng jî bûm.

Fîlmek pevxistina zanistî e ku li gerstêrka Pandora derbaz dibe. Fîlm di dahatûyê de di sedsala 22'emîn de dilîze. Fîlm bi tevahî 150 deqîqe dirêj e. Di fîlm de berî her tiştî bala mirovan dikişîne ku film, fîlmek têkoşîna rizgariyê ye. Sedema vê nivîsara min li ser vî fîlmî jî ev e. Nexwe ez ne jî fîlman tê digihêm ne jî ez li ser wan rexne, rave û şîroveyan dikarim binivisînim. Helbet ez temaşevanek im û li pey guncayişta bîr û baweriya xwe hizr û raman dikim û tînim zimên. Lêbelê min di temenê xwe ê çil salî de hê ti caran li ser fîlmekî nenivîsandiye.

Erê film fîlmek têkoşîna rizgarî û azadiya gelê Navî" li ser gerstêrka Pandora li dijî dagirkeriya mirovahiyê hatiye sazkirin. Bi rastî ev hizr bi tevahî berovajî sazkirinên fîlmên din ên amerîkî ye. Di fîlmên din ên dahatûparêz de hertim çîrok wiha hatiye pevxistin; afirandiyek an biyaniyek an jîndarek derveyî cîhanê her bi vê awayekî ji kûrahiya karîgehê de der dikeve û tê gerstêrka me ango cîhana me dagir dike û mirovahiyê dîl digire û dest diavêje dewlemendiyên binaxî. Dûre jî mirovahî di bin serokatiya Amerîka de dibe yek di dawiya dawîn de bi serkeftin ji vê cengê derdikeve. Vê carê ne wilo ye... *(berdewama nivîsê di rudaw.net de bixwîne).*

# William Shakespeare li Stenbol'ê bi kurdî axifî!

**Stenbol -** 24'ê meha Çile, bi boneya yekem car çapbûna hemû soneyên William Shakespeare bi kurdî, bi wergera Kawa Nemir, li navenda Kurd-Kav'ê ya li Stenbol'ê bi beşdariya helbestkar, wergêr, nivîskar û edîtor Kawa Nemir û çil kesî gotûbêjek û roja îmzeyê li dar ket.

Di roja gotûbêj û îmzeyê de, ku ji ber berf û pûka tund û sir û seqemê gelek xwendevanên kurdî nekarîn beşdariyê lê bikin, serokê weqfa Kurd-Kav'ê, Yaşar Kilerci, koordînatorê rûniştinên wêjeyî yên Kurd-Kav'ê, Behçet Epözdemir, nivîskar Mezher Kara, nivîskar Salihê Kevirbirî, weşanger Hüseyin Gündüz, şanoger Aydın Orak, şanoger Cîhan Şan û pirraniya wan xort û ciwanên kurd ên xwendekarên zanîngehan, çil kes amade bûn.



*Kawa Nemir* *(Wêne: Rûdaw)*

Di gotûbêjê de Kawa Nemir bi dûr û dirêjî û hûrgilî behsa sedemên xebatên xwe yên li ser William Shakespeare kir. Kawa Nemir da xuyakirin ku ew bi xwe gelekî şa ye, ji ber ku tam piştî 400 salan, bi xebateke ku 16 salan berdewam kir, kariye hemû soneyên William Shakespeare yê navdar bike malê kurdî jî.

Nemir wiha bi axaftina xwe de çû: "Ez bi xwe gelekî bextewar im, wekî piştî 16 salan, li vir dikarim bibêjime we xwendevanên kurd ên dilsoz, ku piştî gelek qonaxên xebateke dirêj û dijwar, va ye hemû soneyên William Shakespeare, bi zimanê xwe yê resen, bi îngilîzî û bi wergera bi zimanê kurdî, bi zaravayê kurmancî, bi çapa Weşanxaneya Lîsê, êdî dibe ya we û me hemûyan. Min divê bi we bidim zanîn ku min kurdiya me ya dêrîn û dewlemend li hemberî îngilîziya ku êdî bûye zimanê hemû cîhanê ceriband û ez bi xwe ta astekê dikarim bi dilekî rihet bibêjim, ku kurdî li hemberî îngilîzî bi ser ket. Ev jî ne bi tenê serfiraziya min e, lê ji wê bêtir serfiraziya kurdî û nifşê Rewşen'ê ye."

Beşdarên gotûbêjê li Kawa Nemirê ku ji saetekê zêdetir li ser piyan peyivî bi baldarî guhdarî kirin û gelek pirs li ser xebatên Nemir, li ser Shakespeare, li ser Ehmedê Xanî ji Nemir kirin. Şayanî behsê ye, ku tevî sir û sermayê, bi taybetî xort û ciwanan ji gotûbêjê dûr neketin û gelek pirsên baş arasteyî Kawa Nemir kirin.

Her wiha, Kawa Nemir di ber pirsên beşdaran û bersivên xwe re çend nimûne ji soneyên Shakespeare ji pirtûkê, bi îngilîzî û bi kurdî xwendin û van xwendinan bi taybetî bala bîneran kişand.

Piştî gotûbêjê, Kawa Nemir pirtûka Hemû Soneyên William Shakespeare ji beşdaran re îmze kir.

Kawa Nemir ê 31'ê meha Çile de, li Taksîma Stenbol'ê, li Rodîn Cafe'yê, saet 7'ê êvarê gotareke din li ser van wergerên xwe yên ji William Shakespeare pêşkêş kir û pirtûkên xwe ji kurdîhezan re îmze kir.

### Lêborîn

Di hejmara borî de, di gotara bi sernavê "Fatê ji Kurd 1'ê veqetiya, TRT-6'ê teklîf lê kir" de bi xeletî li jêr wêneyê hunermend Fatê navê Serokê Enstîtuya Kurdî ya Parîs'ê Kendal Nezan hatiye nivîsandin. Ji ber vê yekê em lêborînê dixwazin.



## Wênekêş Enver Özkahraman:

# "Wêne, hînjî weke tiştеke guneh tê dîtin!"

"Ji bo min wêne bi tena serê xwe wateyek girîng e. Wêne helbest e, kevneşopî yî, peyker e. Dem û bûyeran, viyan û viyandaran, başî û xirabî, qencî û kirêtî diqerisîne û dihêle pêş çavan. Bi sal û deman, bo nifşên nû dihêle. Bekgefîlmek ji hezaran wêneyî çêdibin û paşê têne ber çavên me..."

EVDÎLA KOÇER

Enver Özkahraman wênekêşekî navdar yê kurd e. Lê di medyaya kurd de zêde nayê naskirin. Ew di sala 1942'an de li Lîceya Amed'ê li gündê Banadêran ji dayik bûye. Hêj ji biçûkahiya xwe ve dil berdaye ser wêne, şekil û şemalan. Heta niha li gelek devaran tevlî bi dehan pêşengehên wêneyan bûye û gelek xelat jî wergirtine.

Wênekêş Enver Özkahraman di derbarê hunera xwe ya wênekêşiyê de ji Rûdawê re axivî.

Çîroka destpêkirina hunera wî ya wêneyan gelekî balkêş e. Di zarokatiya xwe de bi heriyê li ser taq û dîwaran şiklên curbecur çêdike, lê dêbavê wî jê hêrs dibin û dibêjin "Guneh e!". Belkî jî ev peyva "guneh" dike ku bêtir li çêkirina wêne û şeklan germ bibe. Sebeba vê yekê wiha aşkere dike, "Ji min re digotin guneh e, lê li dîwarê mala me wêneyê Hz. Elî hebû, li dildilê siwarbûyî, zilfîkar di destî de û serê kafirekî lê dida. Wêneyekî din yê Şêx hebû bi şaşika xwe ya mezin ve. Ew wêne ne guneh bûn, lê bo min ew şiklên ku min çêdikirin guneh bûn..."

Piştî eskeriyê di saziyek fermî de 25 salan wekî resamê teknîker kar kiriye û ji wir teqewît bûye. Piştî ku 30 salan bi xweşî li Colamêrgê jiyana xwe borandiye, ne bi dilê xwe be jî ji wir derketiye û ev deh sal in li Wanê dijî. Her çar zarokên wî jî xwende ne û bi karê karîkatûr, wêne û mûzîkê ve mijûl in. Kurê wî Ender Özkahraman karîkatûrîsteke navdar e û niha di Kovara Lemanê de xêz dike.

**Wêne helbest e**

Ew hê jî şev û roj bi karê xwe yê wênekêşiyê ve mijûl e. Her dîmeneke xweşik ji wênekêşa wî re dibe kulek, "Ji bo min wêne bi tena serê xwe wateyek girîng e. Wêne helbest e, kevneşopî yî, peyker e. Dem û bûyeran, viyan û viyandaran, başî û xirabî, qencî û kirêtî diqerisîne û dihêle pêş çavan. Bi sal û deman, bo nifşên nû dihêle. Bekgefîlmek ji hezaran wêneyî çêdibin û paşê têne ber çavên me..."

Paşê vê pirsê dike, "Ma em di jiyana rojane de ji sibê heta êvarê ji rojname û reklaman di kirîn û firotinê de bi hezaran wêneyî nabînin, bi wan bawerî û xapandin nayê serê me?"

Enver Özkahraman heta salên 1970'an jî bi boyaxa neftê bi pûtedarî wêneyên baş çêdike, lê behs dike ku ji ber rola dîn kesî zêde nirx pê nedane, "Ji ber hindê gelek car, gelek kesan ez rexne dikirim. Dema min Colemêrgê bi çiya, dolik, gelî, zê, zozan, zome, gund û merivên nav vê xwezaya bêhempa dît ez aşiqê wan dîmenan bûm. Lê dîtina min têra min nedikir û min dixwest vê yekê bi şêwekî zanatî bînim pêş çavan. Ew dem rewşa min a hêsinî ne baş bû, min bi makineyeka hesan û erzan dest bi fotografkêşiyê kir. Min û hevsera xwe çend salan mutfexê da hempişkî kir, bo cihê tarî ku wêneyan çap bikim. Wan salan karê wênekêşiyê dijwar, zehmet bû, ji ber warê vê hunerê zanîna fizîk û kîmyayî pêwîst bû, bona kêşanê û cihê tarî da çapkirina fotografan. Îro ev tişt pêwist nîn e, Îro fotograf û dîmen bi dîjîtalê pêk tên.."

**Wêneyekî Apê Musa nîn e ku meriv bo mala xwe çarçove bike**

Li ser pirsa me rexneyên tûj li sazî û dezgehên kurd digire û dibêje ku arşîva wêneyan ya saziyên kurd tunene, "Di vê hêlê de kêmasiya saziyên kurd gelek e, yek wêne bedelê gelek çek, gule û pênûsan e li gorî fikra min. Mînakek biçûk bidim, bi sedan rewşenbîr, zanayên hêja hene di nav kurdan de, lê tu nikarî wêneyekî wan yê baş bi dest bixî. Lewre kesek an jî saziyek dest pe nekiriye.Wêneyekî Apê Musa nîn e ku meriv bo mala xwe çarçove bike... Yek wêneyek heye ew jî destek lê montaj kirine..."

Ji bo girtina wêneyekî baş Ozkahraman diyar dike ku serê pêşîn makineyeke kêrhatî lazim e, "Ji bilî vê yekê heke sibe camêrek dest bi wênekêşiyê bike, divê xwedî çav û hişeke baş û divê tav û rewneqiyê û sih û taritiyê jî bizanibe. Divê pêşî ji kesên nêzîkî xwe dest pê bike, ji bav, bapîr, pîr û dapîrê xwe an jî ji cîranê xwe dest pê bike baştir e..."

**Tu ji Roj TV têyî?**

Paşê sohbeta me dikeve ser çend serpêhatiyên wî. Diyar dike ku gava meriv li herêmekî wekî Colamêrgê bijî û bi ser de jî wêne bikişîne her tişt tê serê wî, "Ev serpêhatî û astengiyên min nayêne nivîsandin, rûpel têrê nakin. Ferz bike ku tu yê ji Colamêrgê biçî dereke din. Li noqteyeke lêgerînê wê te bidine sekinandin û wê bêjin te, 'Ev çente ya kî ye?'. Tu yê bêjî, 'Ya min e!'. Wê bêjin, 'Zû veke!' Dû re çente vedikî. Bi şik û tirs dinêrin û dibêjine te, 'Ooooo tu ji Roj TV têyî?'. Karê te ev e, tu dibizdî, bi matmayî û bi dengekî lerizî dibêjî, 'Na.. naaa. Ez yê Roj TV nîn im, va ye nasnameya min...'. 'Madem tu ji Roj Tv'yê nîn î, ev tişt çi ne, ka bêje!'. 'Ev makineyên fotografan in, kamera nîn e!'. 'Tu henekê xwe bi min dikî, ez jî dizanim kamera makîne çawan e? Çima du heb in?.' 'Ez hunermendê fotografa me, yek makîneya slaytê, yê din ya negatîv e'. 'Ez çi zanim slayt çi rîx e tu çi yî? Zû were xwarê..!'..."



*Berbûkên gundê Baz´ê diçin bûkê bînin.*

*Di sala 1991'an de nêzîkî 500 hezar kurd li ser vê pirê derbasî bibûn.*

*Zozan û konêreş parçeyekî ji jiyana kurdan bu, lê belê êdî pirr kêm em rastî wan dîmenan tên.*



*Di meha Tîrmeh´ê de dîmenek ji gola sat´ê yên ku li çiyayên Sat´e li Cîlo ye. Di rojekî de merê karê çar demsalê jî li vir bijî.*

Wênekêş Enver Özkahraman di berdewamiya axaftina xwe de dibêje ku ew gelek caran di rojekê de li cihekî wekî polîsek li cihê din jî wekî xebatkarê Roj Tv hatiye dîtin.

Lê zêde dike ku, berê kurdan ji ber guneh û şermê berê xwe nedidan objektîva wênekêşê, "Lê îro jî ber bûyerên herêmê şik û tirs bûye sedem ku nahêlin wêneyên wan bê kişandin. Helbet heqê wan jî heye. Berî 17-18 salan rojek li Wanê di sûka gundîyan de min ji nişkê ve şiklê pîremêrek kêşa. Hêj min makîneya xwe nehanîbû xwarê, ji milê çepê xortekî bi dengê bilind gote pîremêrî, bi kurdî: 'Aaahhhaaa tu sotî (şewitî) polîsê hanê şiklê te kêşa...' (Ewî hizir dikir ku ez bi kurdî nizanim.) Renge pîremêrî guherî û bi qehir limin mêze kir. Ji şerma tevzînek hatibû laşê min. Ez zivirîm pîremêrê delal û min jê re got, 'Mamo bibore, wallahî bîllahî ez ne polîs im...'. Wî bi dengekî lerizî gote min, 'Êêêê hege tu ne polîs î, ê nexwe bo çi te şiklê min kêşa..' Min 10-15 deqeyan nekarî ez wî pîremêrî qane bikim ku ez hunermendê wêneyan im. Min di dilê xwe da got, ez pişta makînê vekim fîlmê jê derxim bisojim(bişewitînim)jî ew fêm nake. Min gelek şerm kir û wê şevê xew bi çavên min neket..."

**Heta ez sax bim jî ez ê wêneyan bikêşim û kom bikim**

Özkahraman li ser sîmge û sembolên civakê jî balê dikişîne ser ku li nav herêmên paşvemayî tiştên mîna şe, kodik(eyne), û wêne gelekî girîng in, "Lê di nav kurdan de ji bilî vê simbêl û birûyê reş û kilê çavan... Heta îro jî li gund û navçeyên kurdan hêj jî wêne weke tiştеke guneh tê dîtin. Ji ber ola îslamê, lewre dibêjin şikil heram e. Lê li taq û dîwaran gelek fotografên ŞÊX, SEYÎT û MELA hene. Ji ber vê yekê asta wênekêşiya min gorî şert û mercê ez têdayî gelekî zor bû. Lê ligel hemû tengasiyan jî min berdewam kir. Heta ez sax bim jî ez ê wêneyan bikêşim û kom bikim..."

Paşê gotinê dibe ser hêjahiyên manewî û dibêje ku ji xeynî ax, dayîk û namûsê gelek dîmen hene ku meriv ji dil dixwaze nîşanî nas û dostên xwe bide, "Gotinên şaîrekî di wêjeyê de çiqas hêja be, bo min ji yek dîmeneke ku zanatî hatiye kişandin ew çend hêja ye. Ew tiştên li herêma Colamêrgê li plato û zozanên Mezopotamya min didît, min dixwest ku bidim pêş çavan. Bila ew jî bizanin ev hene, dijîn, jiyana vana bi vî şiklî ye. Ev kes û tişt hene loma hatine kişandin..."

**Ji bo çand û hunerê ez karkerek im**

Di dawiyê de wênekêş Enver Özkahraman dilnizmiyê dike, dibêje ku ew xwe wekî hunermendekî qerase nabîne, "Ez karkerek im ji bo çand, huner û jiyana gelê xwe. Ez dizanim, li herêmeke din an jî li rojava, di bajar an bajarokek li rex behrê min ev kar kiriba minê pirtir malê dinê bi dest bixista. Lê bi zanatî min mil da ji bo cihê xwe yê mayînê. Û ez bi ser ketim. Ji zû ve ye dibêjim, ji xîret, ezim û sebatê huner çêdibe. Cihe ku ezim û sebat lê nebe, navê hunerê nayê ziman. 67 salî me hê jî ez bi ezim, bi hêz, bi xîret li dû wêneyê dibezim. Min di hemû jiyana xwe de di pêşengahan de wêneyên gelê xwe nefirotiye, pê ticaretê nekirî ye.Yek jî jê ew e, hûn qet di yek wêneyên min de jî zarokek an jî bebikek kepî û devê wî bi gilmêş, qirêj û bi mêş nabînin. Lewra ez dizanim, heke heqê sabûna wan hebe, gelê min baş dizane ku xwe bişo jî. Gava gel û derdora meriv navê meriv anî pêş, gere meriv pê serbilind be. Ji bo xwendevanên ciwan û xortên kurd dibêjim îro wêneyan bikşînin, ew tiştên ku hûn niha dibînin bila ji bo zarokên we nebin xeyal..."

# Sedemên kuştina jinê ne tenê "namûs" e!

MEDYA DENÎZ

Di hemû beşên civake de jin zordariyê dibîne. Ji ber tabûyên di nav civakê de ti kes însestê (pêwendiyên cinsî di nava malbatê de) nayîne ziman, lê pirsgirêkek mezin e. Saziya KAMER bo ku zordariya li ser jinê bide rawestandin, li gelek bajarên Bakurê Kurdistan'e 23 şax vekirine. Di van şaxan de bi ked û sebreke mezin ew sazî hewl dide alîkariyê bide jinan. Li ser xebat û rewşa jinên ku serî li wan didin, em bi seroka KAMER Nebahat Akkoç re peyivin.

***Destpekê de hûn dikarin KAMER bidin nasandin?***

KAMER di sala 1997'an de hate avakirin. Armanca wê ewe ku sîsteme ku zirarê dide zarok û jinan tespît bike, li hemberî wê karibe zarok û jinê biparêzê. Navenda me ya herî mezin li Amed'ê ye. Li tevaya Bakurê Kurdistan'e 23 şaxên me hene. Armanca me ewe ku em karibin li hemberi kuştinên ji ber "namûsê" rawestin û jinan biparêzin.

***Heya roja îro hûn li hemberi çend kuştinên namûsê sekinîn?***

Ez dikarim bêjin birîna civaka me û giştî cihanê kuştina li ser namûsê ye. Ev birîn li her aliyê cîhanê tê jiyankirin. Nav, reng, tîp biguherîne lê belê birîn wek hev e. Minakeke dijwar ku ez karim behs bikim, Şemse Allak e. Ew û hevala xwe di Mijdar'a 2002'an bi keviran hatin kuştin. Hevale wê di cîh de hatibû kuştin, le Şemse birîndar bûbû û di meha pêncan de ducanî bû. Li nexweşxaneyê zaroka xwe winda kir û pişti demeke kurt wê jî jiyana xwe ji dest da. Ev minakek bû ku em xebata jinê hîn jî xurt bikin. Ji sala 2003'an heya îro KAMER alîkarî daye nezikî 500 jinan.

***Di dema dawî de pirsgirêkên herî dijwar ku hatine navenda we çi ne?***

Li ser destavêtinên ku di nav malbatê de rû didin, bi kurtasî li ser însestê gelek gilî û nerazîbûn hene. Ji civînên ku di dema borî de li 23 navendên KAMER li gel jinan hatine sazkirin, derketiye ku nezikî 50 hezar jin bi însestê re rû bi rû mane, ev hejmareke pirr zêde ye... Le belê ji ber tabûyên di nava civakê de ti kes bi dengê bilind naaxife. Xizan-zengin, biperwerde-bêperwerde, ti cudabûn têde nîne: jin di tevaya civakê de rastî zordariyê tên. Gelek zede kuştinên li ser namûsê pêk tên. Lê sedem ne tenê namûs e, sedem ne îtaetkirina jinê lê kevneperestî ye. Jina ku dixwaze bi îrade û biryar be tê kuştin.

Tevaya çapemeniyê, sazi û mirovên zane divê rojekê berî rojê li hemberî pirsgirekên jinê hişyarî û agahiyan bidin civakê. Pewistiya civaka me bi perwerdeyê heye, bi guhertinên fikrî heye.

**Sedemên serlêdanên jinan a saziya KAMER:**

Ji sedî 77,5 şîdeta devkî
Ji sedî 59,9 şîdeta fizîkî
Ji sedî 76,8 şîdeta aborî
Ji sedî 49 şîdeta zayendî
Ji sedî 13,4 însest
Ji sedî 12,7 destavêtin

**Rewşa civakî û malbatî**

Ji sedî 55 li gor kevneşopiya civakî zewicîne
Ji sedî 30 temenbiçûk zewicîne
Ji sedî 28 nexwende ne
Ji sedî 22 xwendine
Ji sedî 77 zimanê dayikê kurdî ye
Ji sedî 28 zimanê dayikê tirkî ye

*Çavkanî: Komela KAMER*



*Seroka KAMER Nebahat Akkoç* *(Wêne: Rûdaw)*

## Naslî:
# Keçino zû mêr nekin



*Stranbêj Naslî* *(Wêne: Rûdaw)*

**Hewlêr -** Stranbêja nûderketî Naslî, niha bo xilaskirina albûma xwe ya yekem li Kurdistan'ê ye û di çend rojên borî de li navçeya Hewlêr'ê "Sîna" strana xwe ya yekem bi navê "Be Qisem Ke", ku çend peyvên erotîk tê de ne ku dibe bibe sedemê derketina pirsgirêkan jî, kir klîp.

Naslî 20 salî ye û xelkê Hewlêr'ê ye û keçeke bejin bilind e, ev cara yekem e stranan dibêje. Ev dema hefteyekê bi mebesta berhemanîna yekem albuma xwe ya stranan ji Ewrûpa vegeriyaye Kurdistan'ê. Melodiyên stranan ji aliyê Helkewt Zahîr ve hatine danîn û niha Naslî bi klîpkirina strana xwe ya yekem bi navê "Be Qisem Ke", ku bi awayekî nû tê klîpkirin, mijûl e.

Kesên ku karên klîba Naslî birêve dibin ev in: Hesen Emîr wek derhêner, Botan Ebdulla wek wênegir, Mihemed Cemîl wek serperiştyarê kar, Zahîr Brahîm wek ronakî û Hawbîr Ferhad wek montêr.

Naslî behsa klîba xwe bo Rûdaw'ê kir û wiha got: "Bi awayekî zêde xweşik û modern min klîpa xwe li navçeya Hewlêr'ê kişandiye û di vê strana xwe de ez şîretê li keçan dikim ku zû mêr nekin û dinyayê bibînin."

Awazdanerê albuma Naslî, Helkewt Zahîr bo Rûdaw'ê ragihand: "Di klîpa Naslî de peyvên zêde erotîk hene, straneke albûma xwe jî li ser xortekî Hewlêrî gotiye ji ber ew bi xwe jî Hewlêrî ye."

Berhema Naslî ku ji aliyê şîrketa Channel Music ve tê berhemanîn, di çend mehên dahatû de wê belav bibe.

# Keç û kur li înternetcafêyan li hev digerin

LENYA MEHMÛD

**Silêmanî -** Niha deriyên înternetcafêyan li ber keçan jî vekirîne û hin keç di wê baweriyê de ne ku ji bo derbaskirina demê û herweha ji bo naskirina xortan, asayî ye keç jî mîna kuran berê xwe bidin cafêteriyan û sûdê jê bibînin.

Tirê ya 18 salî dibîne ku înternetcafê tiştekî baş e: "Bi wê rêyê min xortek naskir û em bûn heval û hezkiriyên hevdu." Eger ku mala wan rê bidaye, Tirê nediçû derê û hezdikir xeteke înternêta li mala wan jî hebaya, "lê mala me rê li min digirtin."

Lê pêwîstiya Nazenîn'ê bi înternetcafê tune, ji ber ku odeya wê tevî xeta înternêtê heye: "Înterneta min li mal heye û her tiştê bixwazim ez dikim û temaşe dikim." Nazenîn a 23 salî dibêje ku ew dizane ku bêtiriya kuran ji bo dîtina wêneyên seksî înternetê bikartînin: "Eger ji xortan re asayî û nexerab be vê bikar bînin, gelo çima ji keçan re eyb e ?" Ew keç wê yekê jî naveşêre ku ew heya derengî şevan digel hezkiriyê xwe diaxife.

Sarîman a 21 salî dibeje "Ji bilî ku rêyên dûr nêzîk dike, înternrtcafê herweha mirovî ji axaftin û çavên xelkê jî dûr dike." Bêtiriya caran Sarîman bi hênceta bidestxistina zaniyariyan qesta wan ciyan dike. Lê ew di pişt re temaşeyî heman wêneyan dike ku xort jî li pey digerin.

Eger ku înternetcafê ji hin keçan re cihê derbaskirina demeke xweş be, ew ji hinek keçên din re bûne pirsgirêk. Sozan a ku demeke dirêj hatûçûna cafêyên înternetê kiriye û bi wê rêyê xortek naskir, niha ji wî karî gelekî poşman e û dibêje: "Bi rêya çatkirinê min xortek naskir, paşî di êvariyekê de mêvanên me hatin û min zanî ku ew xwazgînên min in. Lê dema ku xort nêzîkî min bû û guhdariya min kir, wî dengê min naskir û zanî ku ez diçim înternetcafêyan, lewra poşman bû."



Xwediyê înternetcafêya Roj li Silêmani'yê, Ehmed Mihemmed dibîne ku bêtiriya xortan ji bo dîtina wêneyên keçên rûs diçin înternetcafêyan, lê bêtiriya keçan ji bo rapor, pêwîstiyên xwendinê û zanyarîstandinê serdana cafêyan dikin: "Lê hin caran keç û kur cafêteriyan û înternetcafêyan ji bo civanên hevdîtinê bikartînin."

Lêkolerê civakî Muhsin Mihemmed dibîne ku girêdayîna keçan bi înternetcafêyan ve ji ber wê kulturê ye ku nexşeya malbata Kurd li ser hatiye avakirin: "Di mal de ew derfet bi dest wan nakeve û neçar dibin ji derve li wê derfetê bigerin."

Li gorî lêkolerê derûnî, Ferman Mihemmed, keç ji bo ku xwe ji givaştinên derûnî rizgar bikin, qesta înternetcafêyan dikin û dixwazin xwestekên xwe yên seksî li wir bêdeng bikin. Ew derûnnas derbarê wê mijarê de dibêje: "Ew cih dikare aramiyekê bo derûnê wan peyda bike û nehêniyên xwe jî li wir vedişêrin."



*Bengî Agirî* (Wêne: Rûdaw)

### Komela kurdên Berlîn'ê:

# "Kurdên Berlîn'ê bi tirkî diaxifin!"

"Mixabin kapîtalîzm hukumdariyê li ser her tiştî dike, dema tu lê binêrî tu dibînî ku di nav kurdan de hê jî hunereka resen derneketiye holê, her kes dixwaze ku bi hunera xwe peran çêbike, ev jî riyeke şaş e..."

**Berlîn (Rûdaw) -** Hunermend Bengî Agirî ligel stranbêjiya xwe ev demek e li Berlîn'ê di bin banê Komeleya Navenda Civaka Demokratîk de berpirsyariya çand û hunerê dike. Heta niha ligel hevalên xwe koroya mûzîkê ya ji bo zarok û mezinan ava kiriye. Her wiha bi taybetî bala wî li ser e ku ciwanên kurd li Berlîn'ê bi çand, huner û zimanê xwe ve mezin bibin.

Di derbarê entegrasyon, çand û huner û gelek pirsên din de Hunermend Bengî Agirî ji Rûdawê re axivî. Agirî diyar kir ku di bin banê Komeleya Navenda Civaka Demokratîk de beşên şano, mûzîk, dîlan û govendê hene û ew ji her alî ve hewl didin ku xizmetê ji bo çanda kurdî bikin, "Lê bandora çanda kapîtal li ser ciwanan pir e, ciwan jî dixwazin di nav çandeke global de bijîn, helbet ji bo rêyekê ji xwe re bibînin ne hêsan e, lê di nav hemû xireciran de jî em hewl didin ku wan fêrî çanda kurdî bikin. Divê em xwe berpirsyar bibînin..."

**"Li ser dîroka civaka alman tiştekî nizanin"**

Em jê dipirsin ka ciwanên kurd bi çi rengî xwe entegreyî civaka Ewrûpa'yê dikin, bi gilî û gazin behs dike ku ciwanên kurd xwendinên xwe yên bilind nabin serî, "Li dibistanê tenê fêrî zimanê almanî dibin, li ser dîroka civaka alman tiştekî nizanin. Ji ber ciwanên me zûka dev ji dibistanê berdidin û têkilî civaka tirk dibin, bi vî awayî di bin bandora çand, dîrok û zimanê tirkî de dimînin. Piraniya kurdên ku li Berlîn'ê dijîn ji Bakur in, lê ji berê ve hatine asîmîlekirin, hêj ew bandor li ser wan e, zû bi zû entegre jî nabin; dizanin ku kurd in, lê wek nasname nizane ka kurd e an alman e an jî turk e. Hîna bandora zimanê tirkî li ser wan pir e; ev yek jî rê li ber nexweşiyên psîkolojîk vedike..."

Li ser vê yekê em jê dipirsin ka gelo kurd di mal de bi kîjan zimanî dipeyîvin, bi kesereke kûr ve dibêje "Qet li halê vî zimanê şêrin û zengîn pirs neke!" û wiha berdewam dike, "Kurdî li Berlîn'ê pir perîşan û feqîr bûye. Rastiyek e ku divê mirov li xwe mikur bê, mixabin kurdên bakur di malên xwe de jî bi tirkî diaxivin, serê me bi vê meselê re pir êşiyaye heyran. Bawer bike her dem karê min ev e ku ez dibêjim bi kurdî bipeyvin, ez ne li dijî zimanê miletên din im, lê heyran zimanê me heye..."

**"Her kes dixwaze ku bi hunera xwe peran çêbike"**

Hunermend Bengî Agirî ji bajarê Amûdê ye. Li zanîngeha Şamê beşa sosyolojî xwendiye. Ji sala 1990'î ve bi çand û hunera kurdî ve têkildar e. Loma pirsgirêkên çanda kurdî ji nêz ve nas dike. Behs dike ku li Berlîn'ê pere hukumdariyê li ser hunerê dike, "Mixabin kapîtalîzm hukumdariyê li ser her tiştî dike, dema tu lê binêrî tu dibînî ku di nav kurdan de hê jî hunereka resen derneketiye holê, her kes dixwaze ku bi hunera xwe peran çêbike, ev jî riyeke şaş e..."

Dû re sohbeta me vedigere ser civaka kurd û tirkan ya li Berlîn'ê. Agirî diyar dike ku li Berlîn'ê kurd û tirk ji xwe re civakek taybet ava kirine, "Lê mixabin bandora çanda tirkî li ser civaka kurd gelek e. Hîn jî kurd li Berlîn û li hemû derê Ewrûpa'yê bi tirkî diaxivin. Ev yek jî dihêle ku kurd rengê xwe û hemû jiyana xwe bike wek a tirkan, ev jî tirsek pir mezin e..."

**"Kurdên Bakur li hev xwedî derdikevin"**

Di berdewamiya axaftina xwe de Bengî Agirî lê zêde dike ku bi xêra tevgera rizgariya azadîxwaz hinkî jiyana kurdan ya sosyal pak e, "Li Berlîn'ê piranî kurdên serhedê dijîn, ji Mûş û Varto'yê gelek in. Kurdên Bakur li hev xwedî derdikevin, ev jî di riya komeleyên xwe re. helbet komeleyên beşên din ên welêt jî hene, bala wan jî li ser rewşa welat e..."

Li ser rewşa stranbêj û nivîskarên kurd ên Berlîn'ê jî rexne dike ku her kes diwaze bi tena serê xwe tevbigere, "Kes li xwe mikur nayê, çi kesê stranek got bû hunermend, yan hevokek nivîsand bû nivîskar û lêkolîner. Berê Înstîtûya Kurdî li Berlîn'ê bû, karê xwe dikirin, lê ta çi radeyê profesyonel bûn nizanim. Berjewendiyên şexsî û îdeologî dibin asteng ji bo karê çand û hunerê..."

**"Wek nasname û hebûn nizane ne kurd e ne tirk e ne jî alman e"**

"Gelo çima civaka kurd wekî civakeke muhafazakar xwiya dike, jê re guhertinên çawa lazim in?", li ser vê pirsa me Bengî Agirî dibêje ku divê civak îmkanên guhertinê peyda bike, "Berê jî min got, dizane ku kurd e, lê wek nasname û hebûn nizane ne kurd e ne tirk e ne jî alman e. Ji hêla çandê ve jî çi bi xwe re aniye, hîn ew maye li cem. Belkî îmkan tunebin xwe biguherîne, berê metoda strana kurdî li ser bêrîvantiyê bû an jî çiya bû, gund bû. Berê jiyanek bê pirsgirêk hebû. Lê dema tê vir nizane ka wê li ser kompûterê bistre an jî li ser tramvayê bistre an jî li ser peran. Lê pir xalên xurt hene ku bibin roman û stran û nivîs. Penabertiya me kurdan, rêwîtiya ku mero diwestîne ji derdê jiyana bindestiyê..."

Berpirsyarê çand û hunerê yê Komeleya Navenda Civaka Demokratîk li Berlîn'ê hunermend Bengî Agirî, di dawiyê de bang li hemû kurdên Berlîn'ê dike, "Hêviya min ji her kesî ew e ku xwe berpirsyar bibîne, da ku çand û hunera kurdî xwe nû bike. Da ku xort û ciwanên me li ser çanda xwe mezin bibin..."

DR. NEBÎ KESEN

## Parlamento ya Ewrûpa û kurd



Parlamentoya Ewrûpa (PE), ji salan vir da li ser demokratîkbûna Tirkîye'yê û pirsgirêka kurd gelek xebat dike. Ji bo vê, di nav sazgehên Yekîtîya Ewrûpa (YE) de parlamento cîhek giring digre. Van rojan jî, du bûyerên nû di çarçeveya PE'yê da pêk hatin. Yek ji wan rapora Komîteya Têkiliyên Derve ya PE bû. Ya din jî, amadekirina konferansa Kurd ya şeşem li Bruksel'ê ye.

Komîteya Têkiliyên Derve, di rapora xwe da qedexekirina DTPyê şermezar dike û daxwaza azadîyên xebata sîyasî bo Kurdan têne ziman. Daxwazên parlamenterên Ewrûpa yên din jî bi pêşvebirina reformên demoktratîkbûnê girêdayî ne. Yek ji van daxwazan jî guhertina destûra Tirkîye'yê ye. Pirranîya daxwaz û rexneyên va komîteya PE, ji alîyê sazgehên din yên YE wek Komîsyona Ewrûpa jî çend salen tên gotin û di raporan da cîh girtine. Rapora nû carek din tespît kirîye ku, Tirkîye'yê di warê demokrasî û pirsgirêka kurd de gavên pêş navê û dibe sedema rexneyên parlamenterên Ewrûpa.

Raporên PE, bo pêvajoya danûstandinên YE bi Tirkîye'yê ra tesîrek dîrek nakin, lê di perjewendeyên duteref de roleke mezin dilîzin. Komîsyon û konseya YE, şîrove û pêşnîyarên parlamenterên Ewrûpa di sîyaseta YE ya Tirkîye'yê da didin berçav. Ji bo vê, mimkûn e ku, hikûmeta AKP'yê ji alîyê berpirsên û sazgehên YE rexneyên giran bigre. Heta niha, sozên hikûmeta tirk yên reforman hatin guhdar kirin. Ji vir ha, daxwaza pêkanîna reformên demokratîk wê dikeve rojeva danûstandinan.

Çawa pirsgirêka Qibris astengîyên mezin di têkiliyên YE û Tirkîye'yê da derxistin, di dema pêşta giranîya rexneyên Ewrûpa divê li ser demokrasî û pirsgirêka Kurd bibin. Di vê warê da, rapora Komîteya Têkiliyên Derve gaveke nû ye. Qedexebûna DTPyê û êrîşên li ser sîyasetmedarên Kurd, ku ji wan hezar kesan pirrtir di salekê da hatine girtin, ji alîyê berpirsîyar û sazgehên YE nayên qebûl kirin û tên şermezar kirin. Di raporên sazgehên YE wek parlamento, rewşa Kurdan û sîyasetmedarên wan gora salên dawî niha pirrtir cîh digrin. Sîyaseta Tirkîye'yê dijî Kurdan êdî dibe astengîyek li ber endametîya Tirkîye'yê ya YE.

PE, vê hefteyê konferansa şeşem di derbarê pirsgirêka kurd li Tirkîye'yê lidardixe. Parlamenter, sîyasetmedar û zanyarên ewrûpî, kurd û tirk wê carek din rewşa Kurdan şîrove û niqaş bikin. Encamên konferensê ne hewceye ku bên zanîn û ji îro da eşkere ne. Tirkîyê, ji alîyê maf û azadîyên mîrovan û mafên kurdan wezîfeyên xwe îhmal kiriye û ji standardên YE gelek dûr maye. Ji bo vê, konferansa li Bruksel'ê wê bibe cihê rexne û daxwazên sîyasetmedar û zanyaran.

Konferansa Kurd ya PE'yê da, bi sernama "Îhtîlafa Kurd û Tirk: Dîaloga sîyasî û awakirina aşitî" tê amadekirin. Siyatmedar, berpirs û zanyarên bi nav û deng wek Desmond Tutu, Leyla Zana, Ahmet Türk, Yaşar Kemal, Noam Chomsky û Lothar Bîsky beşdar konferensê dibin. Bo çareserkirina pirsgirêka kurd, agahdarîyên van şexsîyetan gelek hêja û giring in û wê tesîrek pozîtîf li ser sîyaseta YE ya Tirkîye'yê û kurd bikin. Daxwaz ew e ku, Parlamentoya Ewrûpa, pêşnîyarên vê konferensê daxine rojeva xwe, di civînekê da bide niqaş kirin û encamên wê ligel sazgehên din yên YE'yê bîne ximan. Bi vî awaye daxwaz û pêşnîyarên YE ji aliyê pirsgirêka kurd dikarin hîn jî zelal bibin.

Gotina dawî: Raya giştî ya kurd divê giringîya xebatên PE baş bizane û bide naskirin. Di vir da rêxistînên kurd û medya jî, gerek rola xwe bilîzin û pêşîya xebatên dîplomatîk li Ewrûpa vekin. Eşkereye ku, bê hewldana kurdan, YE gavên nû ji alîyê sîyaseta xwe ya Tirkîye'yê û kurdan da navê. Ji bo vê, hevkarîya Parlamentoya Ewrûpa û kurdan him giringe û him jî pêwîst e.

Interkontinentale Liste (INTERKONTI)
Oliver C. Thornton
Mercedes Martínez-Stangl
Rasal Pakseresht
Florian Stangl
Avishek Thornton
INTERKONTI significa
Xezal Pakserest

# Xezal dengê kurdan dixwaze

**Bonn -** Li parêzgehên Almanya ji bo encumena şaredariyan di meha bê de hilbijartin dest pê dikin. Ji bo wan hilbijartinan kandîdat ketine serferberlikê.

Jina kurd Xezal Pakserest jî ji bo komîsyona integrasyonê bûye namzet. Ew di hilbijartinan de propagandaya xwe bi zimanê kurdî û almanî dike. Xezal, bi israr ala Kurdistanê û zimanê kurdî derbasî nava reklamên ji bo hilbijartinan kir. Xezal Pakserest ji Rûdaw'ê re diyar kir ku ew ji kurdan dixwaze ku dengê xwe bidin wê, ewê jî ji aliyê xwe ve bi her awahî ji bo parastina mafê kurdên ku li Bonn'ê dijîn bixebite. Xezal Pakserest, ku ji Rojhilatê Kurdistanê'ê ji bajarê Sine ye kandîdata INTERKONTI ye, di lîsta (Nr. 5) de ye. Hilbijartin roja 07.02.2010'an de dest pê dikin.


**Rûdaw — Şertên Abonetiyê**

**Ji bo salekî:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda:* 60 Euro · *Swîsre*: 120 CHF · *Brîtanya*: 60 GBP *Swêd* (Schweden): 900 SEK · *Danîmarka* (Danemark): 600 DKK · *DYA* (USA): 100 USD *Kanada* : 120 CD · *Tirkiye*: 100 TL

**Ji bo şeş mehan:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda*: 30 Euro · *Swîsre*: 60 CHF · *Brîtanya*: 30 GBP · *Swêd*: 450 SEK · *Danîmarka*: 300 DKK *DYA* (USA): 50 USD · *Kanada*: 60 CD · *Tirkiye*: 50 YTL

**Ji bo Almanya:** Rudaw Media GmbH
Bank: Deutsche Bank Köln · Konto Nr: 2450161
BLZ: 37070024

**Ji derveyî Almanya:**
IBAN: DE48370700240245016100
BIC: DEUTDEDBKOE

**Navnîşan:**
Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**E-maîl:** info@rudaw.de

### Frîsorê navdaran Sîpan:

# Dixwazim porê navdarên Hollwood'ê biqusînim!

**Köln (Rûdaw) -** Xortê kurd Hesen Îbîş ku ji Rojavayê Kurdistan'ê ji bajarê Efrîn'ê ye, piştî serpêhatiyeke jiyana li Rûsya'yê li Almanya bi cih bûye. Hesen ji ber ku gelekî çavvekirî û zîrek bû, di demek kurt de ji xwe re derdoreke fereh çêkir.

Wî bi sempatiya xwe gelek dost û heval li dora xwe kom kirin. Ji xwe re kire hedef ku dikaneke berberiyê (kuafôr) veke û pîşeyê xwe bi pêşxîne. Ew li welat jî kuafor bûye. Çû dibistana ziman, fêrî almanî bû. Dostên wî yên alman çêbûn. Destpêkê ji xwe re li Almanya bajarê Bonn'ê cihek vekir. Navê cih kir Sîpan. Piştre dest pê kir ji xwe re rêze ''Frisur Sîpan'' ava bike. Pêşiyê li bajarê Bonn'ê, piştre jî li Köln'ê cihên ''Frisur Sîpan'' vekirin. Di demeke ne dirêj de, Hesen navûdeng da. Êdî bala medyaya alman kişand ser xwe. Mezintirîn rojnameya Almanya Bild raporeke dirêj li ser karê wî weşand.

Hesen meşhûr bû û êdî bû berberê meşhûran. Hunermendên wek hîphopvan Xatar û Şivan Perwer porê xwe li cem wî çêdikin. Her wiha gelek hunermendên alman jî berê xwe didin cihê wî. Hesen ev heşt sal in li Almanya ye. Ji karê xwe gelekî hez dike. Dikare were gotin, stîla nû ya porjêkirinê wî di nava xortên alman de bi pêş xist.

Ew her roj stîleke nû ya porjêkirinê derdixîne. Hinek caran ew li ser serê ciwanên ku tên porê xwe li cem wî çêdikin, ala Kurdistan'ê çêdike. Teknîka wî ya porjêkirinê gelekî taybetî ye. Ew wiha dibêje: ''15 kes li cem min kar dikin. Teknîka me taybetî ye. Em her roj bi xwe modêlan diafirînin. Modêlên ku em çêdikin, yên me bi xwe ne. Em teqlîd nakin...''



*Hesen dixwaze rojekê porê meşûrên Hollywood'ê jî biqusîne.* (Wêne: Rûdaw)

Hesen Îbîş vî karî weke hunerekê dibîne. Pirraniya mêvanên wî jî hunermend in. Ew hez dike li kêleka vî karî di fîlmeke sînemayê de jî bilîze. ''Niha berber im, karê min jî karekî hunerî ye. Hez dikim di fîlmeke sînemayê de jî bilîzim. bawer dikim ezê bikaribim rola xwe baş bilîzim...''

Hesen Îbîş, yan jî weke ku di nava xelkê de bi navê Frisur Sîpan meşhûr e, ev du sal in li ser hev ''Sîpan Show'' çêdike. Di wan showan de gelek kes beşdar bûn û medyaya almanî û erebî bi ferehî li ser nivîsand. Hesen Defîleya cilûbergan û şêweyê kultura kuafêriyê nîşan da. Di wan showan de ji bîr nekir ku ala Kurdistan'ê jî bi ser bejin û bala modeleke rûs de berde. Hesen li ser vê yekê dibêje: ''Bila her kes bizanibe ku kurd jî dikarin tiştên baş û cuda bikin. Ez ne tenê berber im, her wiha ez showman im jî. Ez hunera xwe bi gelek şêweyên cuda nîşan didim...''

Yek ji xeyalên ciwanê kurd Hesen ew e ku rojekê porê meşhûrên Hollwood'ê jî biqusîne.

### Konferansa Dêrsim'ê li Stockholm'ê

# Dewleta Tirk li Dêrsim'ê 20 hezar kurd kuştin

KAWE EMÎN

**Stockholm -** Roja 24'ê Çile 2010 li yekê ji salonên mezin ên ABF li Stockholm'ê, konferansa Dêrsim'ê bi beşdariya jimareke zêde ya kurdan û çend kesayetî û parlamenterên swêdî hat vekirin. Konfernas ji aliyê Komîteya Swêd'ê ya Navenda Kurdoside Watch – ÇAK ve hatibû sazkirin. Di konferansê de, gelek lêkolîn hatin pêşkêşkirin û nûnerê çend hizbên swêdî jî bi gotarên xwe piştivaniya xwe bo çareserkirina pirsgirêka kurd pêşan dan.

Di destpêkê de konferans bi strana "Dêrsim Welatê Mawo, Welatê Şervanano" ji aliyê hunermend Ciwan Haco vekirin.

Profesorê Zanîngeha Sodrtele, Davit Gant di lêkolînekê de behsa serhildana Dêrsim'ê bi serokatiya Seyîd Riza û komkujiya Dêrsim'ê (1937-1938) kir û rexne li Dewleta Tirkiye'yê girtin ku naxwaze li vê komkujiyê mikur bê: "Dewleta Tirk bi awayekî sîstematîk û bernamedar komkujiya Dêrsim'ê pêk anî ku nêzîka 20 hezar serbazên Tirk tê de beşdar bûn û ev jî hejmareke zêde ye li gor hejmara daniştvanên wê demê yên Dêrsim'ê ku nêzîka 80 hezar kesan bû." Bi baweriya Gant nêzîka 20 hezar kesan li Dêrsim'ê hatine kuştin. Gant herwiha balkişand ser vê yekê ku li gor belgeyên Dewleta Tirk belav kirine, di dema rûxandina serhildanê de bi tenê 1300 parçeyên çek hatine destesterkirin, ev yek jî dide xuyakirin ku pirraniya qurbaniyan xelkên sivîl bûn û beşê herî mezin ji wan jin, zarok û mêrmindalên kurd bûn. Şahidekî sax ku beşdarî di konferansê de kir wiha got: "Li gel rêza min bo Prof. Gant lê belê hejmara qurbaniyan ji 20 hezaran zêdetir bû."

Di konferansê de Navenda ÇAK daxwaz ji Parlamena Swêd'ê kir ku komkujiya Dêrsim'ê wek jenosîdê nas bike, herwiha daxwaz kir ku Partiya Komarî ya Tirkiye'yê (CHP) ku partiyeke nijadperest a tirk e û xwe wek sosyal-demokrat dide naskirin, ji endametiya Sosyalist-Internasiyonal bê avêtin, ji ber di dema ku AKP sala borî "Projeyê Vebûna Demokratîk" li Parlamena Tirkiye'yê pêşkêş kir, CHP'ê bi awayekî eşkere daxwaz kir bo çavtirsandina kurdan û jinavbirina tevgera azadîxwaz a kurd bi şêweyên Dêrsim'ê bên têkbirin.

Herwiha endamê Parlamena Tirkiye'yê, Şerefettin Halis ku nûnerê bajarê Dêrsim'ê ye û endamê BDP'ê ye, tevê konferansê bû û piştevaniya xwe bo derxistina CHP ji Sosyalist-Internasiyonal pêşan da û di gotina xwe de komkujiya Dêrsim'ê wek komkujiyên ermenî û cihûyan da nasîn.

Şerefettin Halis bo Rûdaw'ê ragihand ku wan cara yekem ji dêlva ''Tunceli'' navê Dêrsim'ê li parlamenê bi kar anîne: "Me daxwaz kir navê rasteqin ku Dêrsim e li bajêr bê vegerandin. Wek parlamenterekî bajarê Dêrsim'ê min daxwaz kir ku gora Seyid Riza û hevalên wî bê eşkerekirin. Lê wan di bersiva xwe de gotin ku ew nizanin gorên wan li ku ne. Min ji wan re got 'we bi rêya dadgehên xwe ew darve kirine, nabe hûn bêjin hûn nizanin gorên wan li ku ne.' Mixabin wan ti bersiv nedan." Halis domand: "Piştre me dîsa heman pirs bir hundirê parlamenê û ji wan re got 'we tawaneke mezin li Dêrsim'ê pêk aniye û we komkujî kiriye' û me daxwaz kir hemû arşîvên wê serdemê bên vekirin û lêkolîn bên kirin. Me daxwaz kir ku komîsyoneke serbixwe herê Dêrsim'ê û lêkolînan dest pê bike."

Navborî got ku wek kurdên ku li ser destê Saddam hatin enfalkirin, kurd di sala 1937'an de li Dêrsim'ê jî hatine bê ser û şûn kirin: " Herwiha me daxwaz kir ku hejmara kuştiyan bê diyarkirin, çiqas kes ji wan jin û zarok bûn. Hejmara kesên ku bo Tirkiye'yê hatin guhastin çiqas e, nemaze jimara keç û jinên me. Em li benda bersiva wan in, lê heta niha ti bersiv nedane. Lê bê guman em dev ji van pirsan bernadin heta hertişt ron bibe."

Serokê Liqê Bakûr ê Navenda Kurdoside – ÇAK Seyidxan Enter derbarê armanca konferansê bo Rûdaw'ê daxuyand: "Kêm hindik komkujiya Enfalan hatiye behskirin û cîhan jê agahdar e, lê belê komkujiya Dêrsim'ê veşartî maye. Armanca me em komkujiya Dêrsim'ê bi awayekî ekademîk hem bi xelkên xwe û hem jî bi cîhanê bidin naskirin. Di konferansê de nûnerên hizbên swêdî hem wek takekes û hem jî bi navê hizbên xwe piştevaniya xwe li vekirina rûpelên komkujiya Dêrsim'ê pêşan dan. Şaredarê Sodrtele yê ser bi Sosyal-Demokratan bi awayekî eşkere di gotara xwe de komkujiya Dêrsim'ê wek jenosid binav kir."

Derbarê beşdariya hizbên kurdî di konferansê de, Enter got: "Me bi hişyarî bi tenê saziyên sivîl ên ser bi hizbên kurdî ve vexwendine, ne wek hizb, pirraniya wan beşdar bûne."

Şanogerê kurd Kemal Görgü şanoyeke kurt li ser komkujiya Dêrsim'ê pêşkêş kir û axaftinên Seyid Riza bi bîr anîn ku di dema darvekirinê de got: Hûn Seyid Riza'yekî dikujin, lê bi hezaran Seyid Riza yên kurd hene. Piştre Riza bi destê xwe werîsa sêdareyê dixe stuyê xwe û ji celadan re dibêje: "Em wek şehîdên Kerbela ne, tiştê hûn dikin neheqî ye."

Ali Gültekin ku di dema komkujiya Dêrsim'ê de zarok bû û bi çavên xwe komkujî dîtiye, wek şahidekî zindî, di konferansê de bi vegotina serpêhatî û bîreweriyên xwe beşdar hejandin.

Gabar Çiya ku berpirsekî Navenda Kurdoside de, bo Rûdaw'ê got: "Di pêşerojê de li ser komkujiyên ku dewletên Sûriye û Îran'ê li dijî gelê kurd pêk anîne, emê konferansên bi vî awayî saz bikin û niha em hewl didin ku navendeke arşîfkirina hemû belge û dokûment û wêneyên ku şahidiyê li ser komkujiyên ku li dijî gelê kurd hatine kirin didin, vekin. Û gilî li hemû şîrketên Rojavayî bikin ên ku çek û madeyên kîmyawî firotine dagîrkerên Kurdistan'ê û wan jî ew di qirkirina neteweya kurd de bi kar anîne."



*Şahidê komkujiya Dersim'ê Ali Gültekin (milê çepê) li gel beşdarekî konferansê.* (Wêne: Rûdaw)

## Saziyên Kurd

# Li Almanya kongre, li Bruksel'ê konferans

**Köln/Stockholm -** Enstîtûya Kurdî ji bo Lêkolîn û Zanist kongreya xwe ya asayî pêk tîne. Rêvebiriya enstîtuyê ji bo endaman daxuyaniyek belav kir: "Ji bo ku em karibin tevlî nîqaşan bibin û kesên komîtê hilbijêrin û her wiha kar û barên xwe bi serkeftî bidomînin, beşdarbûna hemû endaman giring e, ji bona vê yekê em tevlîbûna hemû endaman tika dikin."

Enstîtûya Kurdî li Almanya di sala 1994'an de hatiye damezirandin û serokê wê yê damezrêner Prof. Îsmet Şerif Wanly bû. Avahiya Enstîtuya Kurd di sala 2005'an de li Köln'ê hat vekirin.

Kongre roja Şemî'yê di 27'ê Sibat'a 2010'an de li Köln'ê li salona Enstîtuya Kurdî ji bo Lêkolîn û Zanist pêk tê. Kongre wê di katjimêr 14.00'ya de dest pê bike. Navnîşana cîhê kongreyê wiha ye: Vogelsanger Str.10, 50823 Köln.

**Li Parlamena Ewrûpa'yê konferans li ser pirsa kurdî**

Di 3 û 4'ê Sibat'a 2010'an de "6'emîn Konferansa Navnetewî li ser Yekîtiya Ewrûpa, Tirkiye û Kurd" di jêr navê "Tirkiye û pirsgirêka kurd: dialoga siyasî û avakirina aştiyê" li Parlamena Ewrûpa'yê (PE) tê li dar xistin. Konferans ji aliyê Yaşar Kemal, Leyla Zana, Prof. Noam Chomsky, Dr. Şirin Ebadi, xelatgirê Xelata Nobel'ê ya Aştiyê Desmond Tutu û Bianca Jagger tê piştevanîkirin. Gelek siyasetmedar, akademisyen û şexsiyetên kurd, tirk û ewrûpî weke Ahmet Türk, Leyla Zana, Emine Ayna, Sabahat Tuncel, Felat Sumerkan, Kerim Yildiz, Prof. Dogu Ergil, Hasan Cemal, Oral Calislar, M. Emin Aktar Prof. Lothar Bisky, Prof. Kariane Westrheim, Gerry Kelly û gelek parlamenterên Parlamena Ewrûpa'yê jî wê beşdarî konferansê bibin. Konferans bi hevkariya komên çep û kesk GUE/NGL di Parlamena Ewrûpa'yê hatiye amade kirin.

**FKKS; "Konferansa Pêvajoya Rêlibervekirina Pirsa Kurd li Tirkiye'yê"**

Federasyona Komelên Kurdistan'ê li Swêd'ê (FKKS) bi sernavê "Rêlibervekirina Pirsgirêka Kurd li Bakurê Kurdistan'ê" konferansekê li dar dixe. Ji partiyên kurd Serokê KADEP'ê Şerafettin Elçi, Serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel û Parlamenterê BDP'ê yê Şirnex'ê Hasip Kaplan wek axaftvan tevlî konferansê dibin. Li ser armanca konferansê, Seroka Federasyona Komelên Kurdistan'ê li Swêdê Aycan Şermîn Bozarslan got ew vê konferansê bi armanca niqaşkirina pêvajoya çareserkirina pirsa kurd li dar di-xin: "Em wek FKKS girîngiyekî mezin didin minaqeşeyên di nav kurdan de. Em dixwazin bi vî avayî alîkar bibin bo nêzîkbûna kurdan, herweha zelalbûna ditîn û daxwazên kurdan."

Konferans roja Yekşem'ê, 7'ê Sibat'a 2010'an, di katjimêr 13.00'an de li navnîşana "Rissneleden 10, Stockholm, Hallonberg" pêk tê. Konferans ji raya giştî re vekirî ye.

**Buroya Kurdî ya Bruksel'ê "Konferansa Rewşa Qereçiyan li Ewrûpa" li dar xist**

Buroya Kurdî ya Bruksel'ê jî roja Yekşem'a borî li ser rewşa qereçiyên Ewrûpa'yê semînerek li dar xist. Di semînerê de hiqûqzanê Navenda ji bo Wekheviya Bextan û Têkoşîna li dijî Nijadparêziyê, François SANT'ANGELO, axifî û li ser rewşa qereçiyan agahiyan da.

**Konferans li ser pirsa kurdî li Frankfurt'ê**

Di 6'ê Adar'a 2010'an de li jêr navê "Tirkiye li ser rêya Ewrûpa – Pirsa kurdî di çi rewşê de ye?" konferansek li Frankfurt'ê tê li dar xistin. Konferans ji aliyê weqfên "Friedrich-Naumann-Stiftung" û "Karl-Hermann-Flach-Stiftung" bi hevkariya Komela Gelên di bin Talûkê de "GfbV" tê amade kirin. Konferans li navnîşana "Saalbau Titus-Forum, Walter-Möller-Platz 2, 60439 Frankfurt" di navbera katjimêr 10 û 16'an de tê li dar xistin.

## Mûltîkûltî:

# Li Almanya ji pêncan yek kokbiyanî ye

**Köln (Rûdaw) –** Di sala 2008'an de ji 82,1 milyon şêniyên Almanya'yê 15,6 milyonên wan kokbiyanî bûn, weke ku Daîreya Îstatîstikan a Almanya'yê (Statistisches Bundesamt) li Wiesbaden'ê daxuyand. Bi vê yekê rêjeya kokbiyaniyên ku ji sala 1950'î û virde li Almanya'yê bi cih bûne û paşhatên wan gihişt ji sedî 19 ê şêniyên Almanya'yê. Sala 2007'an ev rêje hîn ji sedî 18,7 bû.

Hejmara şêniyên kokbiyanî bi zaroyên nûbûyî û kesên ku nu hatin Almanya'yê bi 155 hezaran zêdetir bû û di heman demê de hejmara şêniyên ne kokbiyanî (yanî alman) jî bi 277 hezaran kêm bû û daket 66,6 milyonan.

Ji sedî 78 ê şêniyên kokbiyanî ji welatên din ên Ewrûpa ne û ji sedî 34 jî ji welatên Yekîtiya Ewrûpa'yê ne. Ji sedî 15 ê kokbiyaniyan jî ji Asya ne. Welatê ku herî zêde jê mirov li Almanya'yê dijîn, bi 2,9 milyonan Tirkiye ye. 2,9 milyonên din jî ji welatên Sovyeta Berê ne, 1,4 milyon ji Polanya ne û 1,3 milyon jî ji welatên Yûgoslaviya Berê ne. Wekî din 795 hezar ji Îtalya û 391 hezar jî ji Yûnanistan in.

Lê ne tenê gelek kokbiyanî li Almanya'yê dijîn, gelek almanên ku ji welatên din vegeriyane jî hene. Ji Federasyona Rûsya'yê 681 hezar, ji Polonya'yê 568 hezar, ji Qazaxistan'ê 412 hezar û ji Romanya'yê jî 210 hezar kokalman vegeriyane Almanya'yê.

Rêjeya bêkariyê di nav kesên kokbiyanî yên di navbera 25 û 65 salan de duqatî kesên alman e (ji sedî 12,4 li hemberî ji sedi 6,6). Ji 15,6 milyon şêniyên kokbiyanî 7,3 milyonên wan ne hemwelatiyên Almanya'yê ne û 8,3 milyon jî bûne hemwelatî. Hejmara almanên kokbiyanî jî bi 166 hezaran zêdetir bû.



*Ji 15,6 milyon şêniyên Almanya yên kokbiyanî 8,3 bûne hemwelatiyên alman.*

# Rojeva çapemeniya cîhanê

Di rojeva çapemeniya cîhanê ya hefteya borî de çend mijarên giring hilbijartinên giştî yên li Îraq'ê yên ku wê di meha Adar'ê de bên li dar xistin, hêviyên ji Serokdewletê DYA'yê Barack Obama, Konferansa Afxanîstan'ê li London'ê, qeyrana aborî li Yûnanistan'ê û Forûma Aboriya Cîhanê li Davos'ê bûn.

Rojnameya **Washington Post** li ser rewşa li Îraq'ê û rola DYA'yê wiha dinivîsîne: "Di mehên borî de û heta niha jî hemû çav û gûh li ser Afxanîstan'ê bûn. Vê salê bala me hîn li Afxanîstan'ê jî be, lê belê di sala pêş de wê pirrtir bala me vegere ser Îraq'ê. Ji bo destnîşankirina pêşeroja xwe ya siyasî di meha Adar'ê de li Îraq'ê hilbijartinên giştî tên li dar xistin. Ji ber ku gelek nûnerên Sunnî'yan hatin redkirin, îhtimalek mezintir heye ku piştî hilbijartinan şîdet şûnde vegere. Hîn jî 120 hezar leşkerên DYA'yê li Îraq'ê bi cih in û heta meha Tebax'ê dive hemû vî welatî terk bikin. Çava ku Afxanîstan ji bo me giring e, divê bo me Îraq jî wiha giring be. Redkirina gelek nûnerên Sunnî'yan tê wê wateye ku di dema peşiya me de ewê bên marjînalkirin. Û hewlên mezinbûnê li ba kurdan jî hene, yên xwediye dewletek otonom, sê parêzgeh di bin dêste wan de ne. Kurd otorîteya hikûmeta navendî jî bi rastî nasnakin û di firotina petrola Kurdîstan'ê de jî serbest tevdigerin. Heta niha bi şîrketên biyanî re, bê razîbûna Hikûmeta Îraq'ê, nezikî 30 peyman mohr kirine û dema ku li hesabe wan jî neyê, nahêlin petrol bê firotin."




Fareed Zakaria (edîtorê giştî yê **Newsweek International**) sergotara xwe wiha bi dawî aniye: "Lêbelê hîn jî gotina DYA li Îraq'ê derbas dibe û hêzeke wê ya xurt heye. Ji bo wê jî axaftina serok Obama bi serokê kurdan Mesûd Barzanî re giring bû."

Rojnameya fransî **Le Monde** jî di sergotara xwe de rexne li Komîsyona Hilbijartinan û Hikûmeta Îraq'ê dike. Rojnameyê wiha nivîsandiye: "Derxistina nezikî 511 nûnerên pirranî Sunnî ji lîsta hilbijartinên Parlamenê aramiya Îraq'ê dixe metirsiyê. Tirsa Amerîka'yê ew e ku peşî û paşî hilbijartinan dîsa li Îraq'ê tevlihevî û şîdeta olperestên radîkal dest pê bike".

Rojnameya alman **Frankfurter Rundschau** jî nivîsandiye ku bîr û baweriya bi serokdewlet Obama hedî hedî winda dibe: "Barack Obama hîn jî dikare axaftinên baş pêşkeş bike. Lê Amerîka naxwaze bêtir guhdar bike, Amerîka dixwaze bibîne. Amerîka êdî sozên nû naxwaze, encaman dixwaze. Krîza aborî a mezin li DYA'yê êdî bûye krîzeke saziyên siyasî jî. Serokdewlet jî di nav de" Rojname li ser Konferansa Afxanîstan'ê a ku li London'ê hat li dar xistin jî sekiniye û nûserê gotarê Steffen Hebestreit siyaseta Hikûmeta Almanya'yê a Afxanîstan'ê rexne dike: "Artêşa Almanya li Afxanîstan'ê bêçare ye li Hîndûkuş'ê. Stratejiya nû ya Afxanîstan'ê ew e ku hêzên hevpeyman bikevin pozisyonekî xurt ji bo danûstandinên li gel hêzên serhildêr. Derdê Berlîn'ê ew e ku bêyî rûwindakirinê şerê li dijî Talîbanan bi çi awayî be bi dawi bîne.

Malpêra kovara almanî **Der Spiegel** jî bala xwendevanên xwe kişandiye ser krîza aborî ya ku li Yûnanîstan'ê di mehên borî de eşkere bûye û hîn jî didome: Aborînas ji ber pêkhatina "Domîno-Crash" [kişandina welatên din a nav krîzê] hişyar dikin. Yûnanîstan li ber îflazê ye û Ewrûpa di tirsa têkçûna dirava xwe "euro" de ye. Bi hemû hêza xwe aborînas û siyasetmedar li Foruma Aboriya Cîhanê li Davos'ê li rêyên çareseriyê digerin. Lê bi vê yekê pirsgirêk çareser nabe, ji ber ku dewletên din yên Yekîtiya Ewrûpa'yê jî bi bûdçeyên vala re rû bi rû ne.

Pirsa Tîbet:

# Çîn û Dalaî Lama statuya Tîbet'ê niqaş dikin

Ji sala 2002'an ve Çîn bi nûnerên tîbetiyan di nav danûstandinan de ye. Lê tiştê ku Çîn amade ye bide tîbetiyan û armancên tîbetiyan ji hev cuda ne û tîbetî ji niyeta Çîn'ê bi guman in.

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw) –** Piştî bêdengiya bêtirî salekê dîsa şandeke serokê olî yê tîbetiyan, Dalaî Lama, ji bo danûstandinên li ser statuya Tîbet'ê gihişt paytexta Çîn'ê, Pêkîng'ê. Lê hêviyên ji danûstandinan ne gelekî mezin in.

Wekî ku "Parlamena Tîbet'ê Li Derveyî Welat" ragihand, şandekî Dalaî Lama piştî navbereke 14 mehan di 27'ê Çile de gihiştiye Pekîng'ê. Şand wê heta destpêka Sibat'ê li Çîn'ê bimîne. Berdevkekî Wezareta Derve ya Çîn'ê li ser mijarê daxuyand ku hikûmeta wî bi hêvî ye ku Dalaî Lama vê firsetê ji dest bernedê û daxwazên Pêkîng'ê qebûl bike.

Tîbetiyan jî daxuyandin ku ew jî bi hêvî ne ku pêşniyazên wan di derbarê otonomiyek berfirehtir ji bo Tîbet'ê bên pejirandin. Berdevkekî Dalî Lama civîn bi "gavekî giring" ji bo gihiştina "encamekî ji bo herdu aliyan qebûlbar" di pirsa Tîbet'ê de bi nav kir.

Nûnerên Dalaî Lama û Hikûmeta Çîn'ê ji sala 2002'an ve li ser statuya Tîbet'ê di nav danûstandinan de ne û heta niha heşt caran kom bûne. Hevdîtinên herî dawî bêyî encam di Mijdar'a sala 2008'an de bi dawî bûbûn. Di wan hevdîtinan de şanda tîbetiyan daxwaza otonomiyek berfireh di nav sînorên Çîn'ê de, mîna li Hong Kong û Makau kiribûn, lê Çîn'ê ev yek bi tundî red kiribû û gotibû ku ew amade ye tenê li ser vegera Dalaî Lama ku ji dema reva xwe ji Tîbet'ê di sala 1959'an li Hindistan'ê dijî, danûstandinan bike.

Hikûmeta DYA'yê jî pistgiriya xwe ji bo şanda tîbetiyan ragihand. Berdevkekî Wezareta Derve got ku ew alîgirê wê yekê ne ku bi dialogê "pirsgirêkên bi salan heyî" bên çareserkirin. Berdevk got ku hikûmeta wî li benda encamên erênî ye û bingehek ji bo danûstandinên din.

Beriya du hefteyan serkirdên Partiya Komûnîst a Çîn'ê jî li ser mesela Tîbet'ê civînek li dar xistibûn û daxuyandibûn ku ewê hewldanên xwe yên aborî li Tîbet'ê berbiçav berfirehtir bikin. Wekî armanc ew yek hat nîşan dan ku "Herêma Tîbet a otonom" heta sala 2020'an bi awayekî wiha bê pêşxistin ku nîştecihên wê bibin xwedî dewlemendiyeke mîna hemwelatiyen li tevaya Çîn'ê. Lê rexnegir Hikûmeta Çîn'ê tewanbar dikin ku di rastiyê de hikûmet dixwaze newekheviya di navbera gelê resen yê herêmê û çîniyên ku ji beşên din yên Çîn'ê li Tîbetê nîştecih dibin, hîn mezintir bike. Rayedarên çînî tên tewanbar kirin ku ew alîgiriya kesên ku ji derveyî Tîbet'ê tên dikin û bêtir kar û projeyan dezgehên fermî didin wan kesan û ev yek rê li hatina pêlên nû yên çîniyan vedike. Di vê civînê de Serokê Çîn'ê Hu Jintao jî amade bû û wî hem giringiya Tîbet'ê ji bo ewlekariya netewî xêz kir û hem jî got ku ewê pêşî li hemû hewldanên "sabotajî" ji aliyê alîgirên serxwebûna Tîbet'ê, bigrin.



*Li Nêpal'ê jî xwepêşanderên tîbetî rastî êrişên hêzên ewlekariyê tên.*

Herî dawî di Adar'a 2008'an de li paytexta Tîbet'ê Lhasa û herêmên din ên Tîbet'ê çalakiyên nerazîbûnê pêk hatibûn û çalakî vegeriyabûn şerê di navbera tîbetiyan û hêzên çînî. Li gor daxuyaniyên tîbetiyên li derveyî welêt, di van pêvçûnan de bêtirî 200 tîbetî ji aliyê hêzên çînî hatin kuştin. Hikûmeta Çîn'ê kuştina kesekî qebûl kir û serhildêrên tîbetî bi kuştina 21 mirovan tewanbar kir. Hikûmeta Çîn'ê serokê olî Dalaî Lama ji van çalakiyan berpirsyar dibîne bi wî bi wê yekê tewanbar dike ku herçiqas ew hertim behsa otonomiyê dike jî, lê di rastiyê de ew ji bo serxwebûna Tîbet'ê dixebite. Dalaî Lama yê 75 salî van tewanbariyan red dike û dibeje ku ji bo Pekîng'ê baştir e ku bi wî re danûstandinan bike û li benda mirîna wî nemîne, ji ber ku cihgirê wî belkî bi awayekî ji wî hişktir ji bo Tîbet'ê têbikoşe.

Tîbet ji sala 1720'an heta 1912'an welatekî nîvserbixwe bû û di jêr bandora desthilata Çîn'ê de bû. Di sala 1951'ê de hêzên çînî Tîbet dagir kirin û desthilata çînî Tîbet'ê beşekî ji xaka xwe dibîne. Piştî serkutkirina serhildana li dijî dagirkeriya Çîn'ê di sala 1959'an de, serokê olî yê tîbetiyan Dalaî Lama tevî 100 hezar tîbetan reviyan Hindistan'ê. Di 1'ê Îlona 1965'an de Çîn'ê ji aliyê xwe ve "Herêma Tîbet a Otonom" îlan kir ku ji axa Tîbet'ê ya rastîn gelekî biçûktir e.

Afxanîstan:

# Bi xizaniyê laşfiroşî jî belav bû

Li Afxanîstan'ê 1,5 milyon jinebî dijîn. Ji ber tunebûna alîkariya dewletê û karên yasayî bo jinan, tênê rêyek bo gelek jinan dimîne: laşfiroşî.

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw) –** Li Afxanîstan'ê laşfiroşî bi tundî qedexe ye. Di dema desthilata Talîban'an de jinên laşfiroş li qadan dihatin darvekirin, kevirkirin anjî qamçîkirin. Niha ew bi heta deh salan girtîgeh tênê cezakirin.

Vê gavê çiqas jin karê laşfiroşiye li Afxanîstan'ê dikin, ti kes nizane. Li gor nêrîna gelek afxaniyan di dema desthilata Talîbanan de laşfiroşî nebû. Ew bawer dikin ku laşfiroşî wekî gelek cureyên din yên têkçûna exlaqî bi hatina demokratiyê ve girêdayî ye, yanî bi hatina hêzên rojavayî laşfiroşî jî li Afxanîstan'ê belav bû.

Lê rêxistina jinan "Rawa" di salên 1990'î de jî gelek caran bal kişandû ser wê yekê ku qedexeya karkirinê bo jinan ji aliyê Îstamîstên radîkal, gelek jinan ji ber tunebûna alternatîvan mecbûrî laşfiroşiye dike. Li gor cîgirê rêvebirê polîsên Kabîl'ê, Muhammad Khalil Dastyar, hejmara jinên laşfiroş bêyî şik zêde bûye. Û hejmara jinên binçavkirî jî zêde bûye: di 2008'an de li paytext Kabîl'ê 97 jin ji ber vê "tawanê" hatin binçavkirin û tenê di şeş mehên destpêkê yên 2009'an ev hejmar hilket 109 jinan.


*"Bername" bi 80 euro ye.*

Li gor agahiyên rêxistina parastina jinan a almanî "Medica Mondiale" ji sedî 80'ê jinên girtî ji ber kiryarên exlaqî hatine cezakirin: Laşfiroşî, zina û seks a beriya zewacê. Rêvebirê rêxistina alîkariya yasayî a afxanî "Laoa", Afzal Nuristanî jî di wê nêrînê de ye ku pirraniya jinên girtî bi awayekî neqanûnî hatine cezakirin. Wekî ku Nuristanî dibeje, li gor yasaya afxanî du rêyên îspatkirina laşfiroşiyê û zina hene: Qebûlkirina sûc ji aliyê kesa tewanbar anjî piştrastkirina ji aliyê çar şahidan ku di dema bûyerê de amade bûn. Tevî ku di kêmtirîn dozan de jinek sûcê xwe qebûl dike anjî çar şahid hebin jî, lê dîsa jî biryarên cezakirinê tên standin, wekî ku Nuristanî dibeje: "Mixabin yasa ya me di jêr bandora kevneşopiya civakî de ye."

Sedema herî giring jî ku jinan bo laşfiroşiyê dehf dide şer e, weke ku rêvebirê polîsan Dastyar dibeje. Li gor texmînan li Afxanîstan'ê derdora 1,5 milyon jinebî hene ku mecbûrin tenê debara zarokên xwe bikin. Karê yasayî ji bo jinan li Afxanîstan'ê hîn jî gelek kêm e. Wekî din jî, weke ku Masiha Faiz ji Medica Mondiale dibeje, gelek jin ji ber şîdeta di nav malbatê de û zewaca bi zorê direvin. Ji bo debara wan jinan gelek caran tenê rêya laşfiroşiyê dimîne.

## Polîsên brazîlî di 12 salan de 10 hezar kes kuştin

**Köln (Rûdaw)** – Polîsên duyemîn mezintirîn bajarê Brazîl'ê, Rîo de Janeiro di pevçûnên çekdarî yên tevî komên çeteyan di 12 salên borî de bêtirî 10 hezar mirov kuştin. Di daxuyaniyeke ku lêkolînerê şîdetê yê Zanîngeha Rîo de Janeiro, Ignacio Cano daye rojnameya "Estado de Sao Paulo", Ignacio Cano dibeje ku şîdeta berdewam a hêzên polîsan û kuştinên derqanûnî yek ji giringtirîn pirsgirêkên mafên mirovan in li Brazîl'ê.


*Fîşekên vala piştî operasyonekê*

Bi destnîşankirina Sergio Cabral wekî waliyê nû yê Rîo de Janeiro di Çile'ya 2007'an de, hejmara kuştiyan bi rojane 3,2 kesan gihişt asta herî jor. Li gor îstatîstîkên fermî di navbera Çile'ya 1998'an û Mijdar'a 2009'an 10 hezar û 385 kes di encama operasyonên hêzên polîsan li Rîo de Janeiro hatin kuştin.

Wekî ku parêzvanên mafên mirovan dibejin, di operasyonên hêzên polîsên taybet li taxên xizan yên bajêr de gelek caran kesên bêsûc jî tên kuştin. Rio de Janeiro yek ji tundtirîn bajarê cîhanê û herêmên Brazîl'ê ye. Li bajarê xwedî şeş milyon rûniştvan her roj di navbera hêzên polîsan û grûbên çekdar pevçûnên çekdarî rû didin. Gelekên ji wan hezar taxên xizanan li Rîo de Janeiro ji aliyê wan komên çeteyan ve têne kontrolkirin. Li gor Wezareta Dadê ya Brazîl'ê li wî welatê Amerîka Latîn salane bêtirî 40 hezar kes têne kuştin, serê 100 hezar welatiyan 23,8 kuştî.



# Kesk û Kesmek

HUDAÎ MORSUMBUL

Lacê mi Meyman di û nêm serre yo. Hîrê mengî yo ke şono kreş. Keye de ez tey ziwanê ma de qal keno. Demo ke ma ruşna kreş, ma bol tengîye dî. Hefteyê de rey nêweş kewt û keye de mend. Game bi game ha yeno ra xo, qaydeyê kreşî museno.

Her cîhet ra faydeyê kreşî zî zêde yo. Embazê xo yê emsalî benê zêde. Kaykerdîş ra dahîna zaf keyf gêno. Her roje nameyê embazanê xo museno û mareno. Kincê înan kî kam reng de yê, kam bermeno, maya xo wazeno, kam werdê xo weno kam nêweno. Nînan ser o wurdî-wurdî xoşebere kenîme.

Mamostayê ey ê kreşî zî ey ra zaf şa benê. Mîyanê înan de cayê mamosta Kubra cîya yo. Meyman û Kubra yewbînî ra zaf memnun ê.

Rojê heme domanî resman boya kenê. Mamosta Kubra kaxitan vila kena. Peyê cû vana: Nameyê şeklî vacêrê û hewz boya kerê. Meyman zî nameyê rengî kurdkî vano :

- Daîre yo, kesk, kesk keme?

Mamosta Kubra vazena ke rast bikero, tekrar kena û îzeh kena. Çunkî tersena ke Meyman kaxite bibirno.

Meyman ziwanê ma de vano “kesk” la mamosta vana qey Meyman vano “kes”, yanî wazeno bibirno. Mamosta Kubra vana:

- Meyman “kesmiyoruz, yeşile boyuyoruz!”

Yanî vana, nêbirnenîme Meyman, hewz boye kenîme.

ROŞAN LEZGÎN

## Gulaşê Ap Husî



Serê wisarî, hema newe çayîr û çîmenî zîl dabi. Xortê dewe cayê cuwenan de kom bibîy, gulaşe girewtêne. Tayê rîsipîyê dewe, çend cinîyê pîrî zî înan ra cor, vereroj de roniştibîy, hem xo rê suhbet kerdêne hem zî temaşeyê xortan kerdêne.

Nacînîya Zelxe zî mîyanê cinîyan de bî. Nacînîya Zelxe, rewna mêrdeyê aye merdbi, vîya bî. Heta ti vajî qelewe bî, eynî sey yew heşe bî.

Badê ke xortî gulaş û kelebutan ra mird bîy, lajê Ap Husî yê qijî şeytanîya xo ra va:

- Hêêy! Şima çi roniştê? Werzêne, dora şima ya. Şima gulaşe bigîrêne, ma goşdarîya şima kenê.

Veng kesî ra nêvejîya. Lajekî hewna vatişê xo tekrar kerd. Hewna veng kesî ra nêvejîya.

Ap Husê Keyê Hesan ke zemanê kênayîye ra çimê ey Nacînîya Zelxe de bi, va:

- Wa Zelxe bêro. Ez û a ma gulaş bigêrî.

Dewijan rê roj akewt. Her kesî cayê ra xeberêk vate, xergele kerd. Nat û wet ra şemate virazîya. Tayêne va, wilay Nacînîya Zelxe Ap Husî binê xo de pelixnena. Tayêne va, wilay Ap Hus linge erzeno ver, paştîya aye dano erd…

Hirehir kewt miletî ser, xo rê huyay.

Ap Husî va:

- Mi rê ferq nêkeno. Ez zî bikewî Zelxe ser, mi rê kar o. A zî bikewo mi ser, hewna mi rê kar o!

Reyke de pirqî gina miletî ro. Huyayîşan ra her kes cayêk de gina war ro.

Nacînîya Zelxe ewnîya Ap Husî ra, va:

- Homa to bigîro. Ti fedî nêkenî, ez to ra vajî çi!

Û werişte şîye bi keyeyê xo.

# Tewr derg û tewr kilmê cîhanî amey têhet




Camêrdo tewr derg û o tewr kilmê cîhanî Sultan Kose û He Pingping amey têhet.

Sultan Kose kurd o û qezaya Mêrdînî Dêrike ra yo. Qama ey 246.5 santimetre derg a. Nika kitabê rekoran yê cîhanî Guinness de sey camêrdo tewr derg yê cîhanî qeyd bîyo.

Sulatn Koseyî de bi nameyê “Pituiter girantism” yanî “nêweşîya dêwan” yew nêweşî estbîya. 2008 de amelîyat bîyo û qameştişê ey vinderto.

Sultan Kose neke tena bi qama xo camêrdo tewr derg yê cîhanî yo, bi dest û linganê xo zî merdimo tewr derg yê cîhanî yo. Destê ey 27.5 santîm, lingê ey zî 36.5 santîm derg ê.

He Pinping zî Çîn ra, mintiqaya Moxolîstanî ra yo, 21 serre yo. Qama ey 74 santîmî ya. O zî kitabê rekoran yê cîhanî Guinness de sey camêrdo tewr kilm yê cîhanî qeyd bîyo.

He Pinpingî de zî nêweşîyêka bi nameyê “Primordial” estbîya û wucûdê ey gird nêbîyo. Vanê, gama ke He Pinping ameyo dinya, qaso ke bikewo kefê destêkê babîyê xo, hende hurdîlek bîyo.

Camêrdo tewr derg û camêrdo tewr kilm yê cîhanî 15 çile 2010 de Îstanbul de ameyê têhet.

Vanê, rojnamegeran He Pinpingî ra persayo vato, “Embaza to esta?” He Pinpingî vato, “Yew kênaya ke qama aye normal a, embaza min a.” Dima Sultan Koseyî ra persayo. Ey vato “Embazêka min a qama mi de çin a. Na mesela de He Pinping zaf bişans o.”

# Mi Şêx Seîd dî

Mi Şê Seîd Dî de roportajê gelek balkêşî yê ke Malmîsanijî meseleyanê cîya-cîyayan ser o, merdimanê cîya-cîyayan reyde kerdê, estê. Nê roportajan ra di teneyî meselaya Şêx Seîdî ser o yê. Nê her di roportajî hetê tarîxê ma ra muhîm ê. Yew roportaj derheqa kirmanckîya Modanî (Motkanî) de yo, tede derheqa Modanî (Motkanî) de zî zaf malumatî estê.

**Sernameyê roportajan wina yê:**

- Mi Şêx Seîd Dî
- Pîlonê Xwi Ra Vaci “Teslîmbîyayîşê Şêx Evdirehîmî Çin O”!
- Derheqê Kırmancanê Modanî (Motkanî) De
- Nameyê Ey Karmen Bi, Bi Ferman
- Cenîyêka Hong-Kongiji Va, Mi Nuşt

**Kunyeya kitabî:** Malmîsanij, Mi Şêx Seîd Dî, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2009, 168 rîpelî



## Şaredara Bajaroka Barman a Mêrdîn'ê, Gülbeyaz Güneş:

# Beriya me di budçeya şaredariyê de deh quruş tunebû

**Bi rastî saziyên dewletê bi çavekî baş li me nanêrin û helwesta wan ya neyarîyê heye. Ji xwe hetanî roja îro tu xizmet ji hêla dewletê ve nehatiye kirin. Ji aniha û pê ve jî qet alî me nakin. Heta ku dixwazin em demekê berî demekê têk biçin. Cerdevan jî li gund hene û qereqola leşkeran jî li nêz e. Ji bilî alîkariyê em her tim di bin çav de ne. Milkê dewletê tenê avayiya dibistanê heye li vî gundî, ew jî ji bona pişavtina me çêkirine. Yan na wê tiştekî din jî çêkirana.**

ÇIYA MAZÎ

**Barman -** Ku mirov berê xwe ji Mêrdîn'ê bide Çiyayên Surguçiyan û di nav dar û deviyan re derbas dibe, hewayek çiyayî û sar bedena mirov diricifîne. Ku mirov li gundê Barman'a Surguçiyan rast tê, bi rastî jî mirov wê demê difikire, mirovek jin, kurd û ji Partiya Aştî û Demokrasiyê BDP (DTP) li nava van çiyayan li vî gundê ku hertim di bin çavdêriya qereqola leşkeran de û çaralî cihê nobedarên cerdewanan, şaradar be, egîtiyek pir mezin e. û tew mirov bibihîze ku ev gund bi sedsalan di bin destê axa û began de pir pêkûtî kişandiye û mirov bibihîze ku şaredarî jî ji dema ku bûye bajarok de cara nû dikeve destê partiyeke demokrat û kurd mirov dê hê ecêb û şaş bimîne. Barman bajarokeke Stewra Mêrdîn'ê ye. Hejmara mirovan li dor 2000 an e. Şaredara vê bajarokê Gülbeyaz Güneş e. Ew jî wekî her şaredarê bajarên biçûk ên BDP'yî her tim di nava sohbeta gundî û jinên welatî de ye. Wekî ew dibêje, "em tu kesî ji devê deriyê şaredariyê venagerîne û çaya me her tim germ e."

Jinên gund jê re dibêjin; "Berê em nikarîbûn nêzîkî avahiya şaredariyê jî bibûna, lê aniha em tên û çayê jî vedixwin, ev nahmetek mezin e ji me re, em êdî zanin em jî mirov in."

Me jî xwest mînakek wisa wekî gelek mînakên din ku li ser vê axê rûdidin balkêş ji xwendevanên Rudaw'ê re pêşkêş bikin. Brêz Güneş jî ji dil bersiva pirsên me dan.

***Birêz Gülbeyaz Güneş, pêşî, gelo hûn çawa bi serketin? Hinekî hûn karin bahsa rojên berî hilbijartinê bikin?***

Beriya şoreşa li Kurdistan'ê dest pê bike hebûn û tunebûna jinê li Kurdistan'ê ne di rewşeke baş de bû. Bi despêka şerê li Kurdistan'ê gelek rê û ferasetên civakê hatin guherîn di van guherînan de jina kurd jî nesîbê xwe jê wegirt. Ji bona azadiya xwe hêdî hêdî jinan xwe ji malan berdan nava qadan û pî bî pî, bi hem cinsên xwe re ketin nava tekoşîna azadiyê. Jina ku bê destûra hevserên xwe, bav û birayên xwe nikaribû biçûna mala cîranê xwe, li çiyayên Kurdistan'ê bû xwedî hêz û xwedî vîn. Helbet ev serguherîn ewqas rehet çênebûn jina kurd li xwe û li vîna xwe xwedî derket fikir û îradeya xwe gihande hev. Ew kesê ku piçekî karibe bifikire muhaqak ev tekoşîn wê tesîra xwe lê bike. Ez bi xwe, xwe deyndarê vê tekoşînê dibînim di warê mijara jina kurd de hinek sermiyanê xwendina min hebû, kesayetên mîna Xatê Xanim û Mayan Xanimê û Berîtan tesîrek xurt li min kiribûn. Ew wêrekîya ku min ji van lehengên jinên kurd wergirt ez berbi peşengiyê ku ji gelê xwe re bikim, daf dam.

***Ev şaredarî, wek hûn dibêjin hê nû ketiye destê DTP'ê, ijar rojên pêşî ku hûn li meqam rûniştin we çi his kir? Û reaksiyonên li himber we yên pêşî ji alî gundiyan û ji alî dewletê, çi bûn?***

Beriya ku partiya me li wê bajarokê bi ser keve axayê gund, pazdeh salan kiribû çiftlika xwe û malbata xwe. Beriya wî jî ji xwe yên wekî wî bûn. Li şûna xwe du tirilyon lira deyn û xaneke xerabe ji me re hişt. Tu tevayê beldê vî gundî bifiroşî vî pereyî nake. Û di budça belediyê de deh kuruş tunebû. Roja ku em biserketin ew hiskirîna ku ez ketim bin barekî kiran bi wê pisîkolojiyê ez can giran bûm. Lê min soz û biryarek dabû xwe û dabû partiya xwe ku ezê tucarî nekevim zeafa têkçûnê

> Jina ku bê destûra hevserên xwe, bav û birayên xwe nikaribû biçûna mala cîranê xwe, li çiyayên Kurdistan'ê bû xwedî hêz û xwedî vîn.

***Belê... Pere tunebûn û deyn pir bûn, lê heyînên şaredariyê çi hebûn, dema hûn çûn meqam we çi mal û milkên şaredariyê dît ku hûnê bi wan xizmetê bikin?***

Wekî li jor jî min anîbû ziman ku tu tiştek tunebû û tu avahî nehatibû avakirin tirimpêlek ku şaredar lê siwar bibe jî tunebû. Ji bilî avahiyek kevin, mase û kursiyên şaredariyê. Pûnûsek xweşik jî tunebû.

***Baş e, vê carê we pêşî kêmaniya bajarokê çi dît an xizmeta we ya pir giring ku bi lezgînî bê kirin çi bû û aniha ya ku hewceye bê kirin, çi ye?***

Bajaroka me di nava gemar û kirêjê de bû me ev bi ecêbmayin dît. Me bi hinek karkeran pêşî dest pê kir ji bo vê paqijiyê. Lê ji bona qirêja bajarokê ji nava kuçe û kolanên wê bê bi durxistin bi lez û bez divê binesaziya wê bê çêkirin. Ew jî pere divê alîkarî divê.

***Dewlet çiqas alikariyê dide we, têra çi dike? Li alî deyn li aliki ji xizmet.***

Alîkariya dewletê tenê pereyê ku para me ye, ya ji banqaya bajaran (İller Bankası) ku tê. Li gora hejmara mirovan e. lê ew hejmar jî daketiye. Ji ber ku berî hilbijartinê pir xuya dikirin. Ew pere jî aniha hindik maye. Ew hatin ji xwe têra meaşê karkeran jî nake li bajarokê 22 karkerên bi qadro û 3 karmend tevlî min 26 kes maaş distînin, pereyê ku ji banqê tê 17.000 TL ye. 175 yê xwedî aboneyên avê hene, lê pirê wan pereyan nadin. Em nikarin pereyên baca xaniyan jî bistînin. Ji ber ku xelk dibêjin "hûn partiya me nin, yê berê nedistend çima hûn distînin." Em dixwazin gelê gund alîkariya me bike, lê bi rastî giş xizan û belengaz in. Karekî zor û zahmet li pêşiya me ye.

***Hûn dibêjin ji alî saziyên dewletê alikarî nayê, ew saziyên dewletê berevajî vê yekê astengiyan çêdikin an na? Ji ber ku di nava gelên herêmê de jî pir bahs dibe,gelo hê jî çêdibin?***

Bi rastî saziyên dewletê bi çavekî baş li me nanêrin û helwesta wan ya neyarîyê heye. Ji xwe hetanî roja îro tu xizmet ji hêla dewletê ve nehatiye kirin. Ji aniha û pê ve jî qet alî me nakin. Heta ku dixwazin em demekê berî demekê têk biçin. Cerdevan jî li gund hene û qereqola leşkeran jî li nêz e. Ji bilî alîkariyê em her tim di bin çav de ne. Milkê dewletê tenê avayiya dibistanê heye li vî gundî, ew jî ji bona pişavtina me çêkirine. Yan na wê tiştekî din jî çêkirana.

***Çiqas ne pêkan xuya be jî, gelo ji alî çandê de we çi xizmet kirine. Mînak ji bo zimanê kurdî alikariyek we çêbûye, an wê di rojên pêş de çêbibe gelo?***

Bajarok bi xwe seranser kurd in û bi kurdî diaxivin. Ji kurdî pê ve tu zimanê din nizanin. Xebatên meclisa me bi kurdî tên kirin. Ez bi xwe zimanhezek im û hîna bêtir xwe bi zimanê xwe îfade dikim li vê derê.

***Ji bo xwendekarên dibistanan an yên zankoyan tu alikariyên we çêbûne an wê çêbibin çênebin?***

Belê berî ku dibistan vebin her çikas îmkanê me tunebûn jî lê dîsa me ji bona her şagirdekî dibistanê çentê û alavên wekî din temin kirin û li tevayê xwendevanan belav kirin.

***Karmendên we têra we dikin, yên teknîkî henin an na?***

Na teknîkî tune ne. Li vê bajarokê bi 4 karkeran jî xizmet wê bê meşandin, lê şaredarê berê axê, ji bona ku her car bê ser kar 26 karker û karmend kiriye bela serê şaredariyê û bajarokê û ew karmendên daîmi, qedro kirinê. Hatin û pereyên bajarokê giş ber bi wî alî de diherike û em nikarin tu xizmetê jî bikin. Pereyên tên li deynan dihere û bizorê têra meaşan dike. Ji xizmetê re qet namîne.

***Wekî xeyal ezê tiştekî din jî bibêjim, gelo festivalên ku şaredariyên kurdan yê din birêdixin, dikevin serê we? Hûn ji tiştekî wisa difikirin?***

Belê dil heye ku em di demên pêş de Festîvala Gûzan lidar bixin, heke em derfetan ji xwe re çêbikin hilbet. Cotkarî û bexçevanî li vir bi metodên ku ji bav û kalan de maye tê kirin. Bi vê festivalê belkî em rêyekê vekin ji bo wan. Lê belê ji bona guherînê finanseke xurt û perwerdahiyeke xurt lazim e.

***Em bibêjin derfetên we çêbûn, gelo di pêşerojê de hûn dixwazin wekî din çi bikin ji bo Barman? Xeyalek we yê mezin heye an na?***

Hilbet xeyalên me pir in. Ku derfet çêbibin emê dem bi dem wan xeyal û projeyên xwe bicîh bînin. Min xeyalek xwe bi cîh anî jî, di xeyala min de firina nan hebû min ew bi îmkanê belediyên GAP (Yekîtiya Şaredariyên Herêmê) bi cîh anî. Mandireya şîr û binesaziya bajarokê, wekî çêkirina cihoka ava pîs, di nava projeyên min de ye û dixwazim tevayên zikakên bajarokê kevir bikim û mirovê vê derê ji nava herîyê xelas bikim. Lê ev xizmet jî bi pereyan çêdibe hilbet û pereyên me jî aniha têra me nakin ku em van xeyalên xwe bicîh bînin.

***Têkiliya we û şaredarên BDP'yiyên din çawa ne, ji bili partiyê, aliyê alikarî û teknîkî?***

Têkiliyên bajarokê me û yê derdorên baş e. Em ji hevdû fêdê dibînin û dîtinên xwe fikrên xwe parve dikin. Lê pirsgirêkên gişan em dikarin bibêjin heman tişt in.





**Li zankoyên Kurdistan'ê 120 xwendekarên Bakurî**

# Kampûsa xwendekarên keçên Bakur dan ber keviran

"Me ev heq nekiribû. Ji ber cilûberg û tevgerên me nabe ev tişt bên serê me, dema em hatin vêdere ji me re hat gotin xwe neguherine, ku gelê me yê vir jî bikaribe di çarçoveyeke berfirehtir de li jiyanê temaşe bikin û tehemul û hevdûqebûlkirin bi pêş bikeve."

SERKAN İNCE

**Hewlêr -** Derbarê rewş, bername, daxwaz û hêviyên wan de rojnameya Rûdaw li gel çend xwendekarên Bakurê Kurdistan'ê axifî. Yên ku li beşên cuda li Zanîngeha Selehedîn ya Hewlêr'ê dixwînin. Di hevpeyvînê de xwendekarên bakur derbarê hatina xwe ya Herêma Kurdistan'ê de hest û ramanên xwe û serpêhatiyên xwe yên di pêvajoya xwendinê de jiyane û dijîn, anîn ziman.

Derheqê hatina xwe ya ji bo Herêma Kurdistan'ê de, Hesret Edip Qasim, ku ji bajarê Çewlik'ê ye û li Zanîngeha Selehedîn pola dûyem beşa Ziman û Wêjeya Kurdî dixwîne, got: "Di 2002'an de Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî gotibû ku êdî zanîngehên herêmê xwendekarên bakur, rojhilat, rojava jî werdigirin. Li ser vê daxuyaniyê ez û du xizmên xwe em hatin başûr ji bo xwendinê. Min beşa Ziman û Wêjeya Kurdî hilbijart, ji ber ku li Bakurê Kurdistan'ê perwerde û fêrki- rina kurdî qedexe ye û tenê em di nav mal de dikarin biaxifin. Ji ber vê rewşê ez dixwazim li başûr di warê zimanê kurdî de bibim pispor ku sûda min bigije gelê me yê bakur."

Sevgi Muhyedin Suleyman ji bajarê Amed'ê ye, li Zanîngeha Selehedîn pola duyem beşa Ziman û Wêjeya Îngilîzî dixwîne, diyar kir ku bi rêya Komeleya Ciwanên Kurd (Komela Çira) ew hatiye: "Min xwest ez Başûrê Kurdistan'ê bibînim û nas bikim, ji ber ku dihat gotin li başûrê welêt ala me li ba dibe û perwerde bi zimanê me ye. Herwiha hatina min a vir, hinek jî ji ber maceraperestiya min bû."

Xwendekarên bakur dibêjin, ji ber cûdahiya çandan rastî hinek astengiyan tên. Di vî warî de xwendekara zimanê kurdî Hesret Edîp wiha axifî: "Herçiqas em hemû kurd bin jî, ji ber em di bin desthilatdariyên cûda de mezin bûne, di navbera çanda kurdên hemû parçeyan de cûdahî hene. Kurdên bakur ji cilûbergan bigrin heta di tevgerên xwe de, hinek ji gelê me yê başûr cûdatir in. Lê divê ji ber vêna em rû li hevdu nezivirînin; em yek netew in. Ger kurdên başûr li bakur bibûna mêvan ez bawer im emê germtir û dilşewattir nêzîk bibûna. Sala yekem dema em li vir bûn, yûrdên xwendekarên her parçeyê Kurdistan'ê cûda bûn. Kampûsa me ya keçên bakur hat kevirbarankirin, ew bûyereke gelekî şermîn bû. Me ev heq nekiribû. Ji ber cilûberg û tevgerên me nabe ev tişt bên serê me, dema em hatin vêdere ji me re hat gotin xwe neguherine, ku gelê me yê vir jî bikaribe di çarçoveyeke berfirehtir de li jiyanê temaşe bikin û tehemul û hevdûqebûlkirin bi pêş bikeve. Em li vir xwendekar in û heta niha zirara me negihiştiye ti kesî."

Derbarê qonaxa piştî qedandina zanîngehê, ka xwendekar dixwazin çi bikin, Sevgi wiha axifî: "Pêş her tiştî ez hêvîdar im beşa xwe xilas bikim û piştî xilasbûnê ez ê biçim qurseke baş ku bikaribim îngilîzî fêr bibim; ji ber ku ez li zanîngehê tiştek fêr nabim, hewldanên min tenê bo pol derbaskirinê ye û derbas dibim. Her civak serdemên wê yên guherîn û veguherînê hene, ez bawer dikim civaka me ya vir jî wê pêş bikeve û biguhere; lê bo vêna dem pêwîst e. Ger guherîn û veguherîna civaka vir heta derçûna min ya zanîngehê pêk bê, ez dikarim li vir bimînim. Ger na, hema kuderê dibe bibe, bêyî ku li paş xwe binêrim ez ê ji vir biçim."

Xwendekarên Bakur wiha dibêjin: "Di Zanîngeha Selehedîn de herçiqas mamostayên gelekî kêrhatî hebin jî, pergaleke jiberkirinê li zanîngehê serdest e. Herçiqas di warê rûxsar de pergala Zanîngeha Selehedîn baş be jî, lê naverok nehatiye tijîkirin. Zanîngeh cihê hizrên azad û nû ne, cihê lêkolînan e, ne cihê dubare kirinê ye. Herwiha pêşketina neteweyê yan jî welatekî li zanîngehan dest pê dike û saziya welatekî ya herî bingehîn e. Ji ber ku rêveber û rewşenbîrên civakekê ji zanîngehan derdiçin. Tirkiye herçend xwedî pergalek zextkar jî be, lê di zanîngehên Tirkiye'yê de çanda hilberînê jî heye. Ger di navenda zanistê de jî hilberîn nebe, ew welat vê çawa pêş bikeve."

**600 xwendekarên ji beşên din li Kurdistan'ê dixwînin**

Bi biryara Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî ji 2002'an ve xwendekarên ji parçeyên din yên Kurdistan'ê jî tên wergirtin. Hatina xwendekaran di sala 2006'an de dest pê kiriye û niha 120 xwendekarên bakurî li zanîngehên herêmê dixwînin: 83 li Hewlêr'ê, 35 li Dihok'ê û 2 li Silêma- ni'yê. Herwiha 195 xwendekarên ji rojava jî li zanîngehên herêmê dixwînin: 120 li Hewlêr'ê, 50 li Dihok'ê û 25 jî li Silêmani'yê. Ji rojhilat jî niha 308 xwendekarên li zanîngehên herêmê dixwînin:157 li Hewlêr'ê, 5 li Dihok'ê, 50 li Silêmanî, 40 li Koy'e, 50 li Kelar û Xaneqîn, 6 jî li Soran.

**Xwendevana zimanê kurdî Özlem:**

## "Heta em qonaxa romana bajarvaniyê nebînin em keziyan bidest naxin."

ÇIYA MAZÎ

**Mêrdîn -** Heta niha li ser xwendina bi kurdî pirranî ji nivîskaran hat pirsîn, lê kesî fikra xwendevanên wêjeya kurdî nepirsî. Ji ber vê yekê me bi xwendevana zimanê kurdî birêz Özlem re hevpeyvînek çêkir.

***Têkiliya we bi nivisa kurdi çi demê û çawa çêbû, hûn dikarin hineki qal bikin?***

Heft sal in ku ez bi kurdî dixwînim. Di destpêkirina xwendin û axaftina kurdî de têgihiştin ku ez bêtir karim têkiliyê bi derûniya xwe re deynim. Ji xwe ziman tenê ne alavekî têkiliyê ye. Kesayetiya mirov bi xwe ye. Çîroka min jî ji vir dest pê dike. Yanî bîyanîtiya min û çanda min nîşanî min da ku ziman ji alavekî bêtir hebûna bav û kalan e.

***Tu bi pirranî ji kijan beşê wêjeyê hez diki? Di kurdî de hezkirina te tê guherandin?***

Ku em wêjeyê tenê bifikirin roman û çîrok e. Kêmaniya wêjeya kurdî werger e. Ji ber ku bala min bêtir li ser civaknasî û psîkolojî ye. Di vî aliyê de ditengijim. Wêjeya tirkî û kurdî, ji ber ku di pêxîra hevde ne û ji ber ku berhemên hêjayî xwendinê hene, em bêtir roman û çîroka wê dişopînin.

***Di wêjeya kurdi de kijan beş hê pêşketi ye?***

Çawa ku jiyana me ji êş, jan û birînan pêk tê, wêjeya me jî di vê mijarê de çog daye. Dibêjin heft çîrokên hirçê hene, giştî jî li ser hirmiyan e. Ku di du tiştan de berhemên têrtije neyên nivisandin, wê wêje negihije qonaxek nuh. Qonaxa nuh jî postmodernîzm e. Yek jê nivîsariya gundîtî ye ya din jî berhemên zargotin û folklorîk e. Ev asteke ku wêje mecbûr e tê de derbas be. Pirsek li nav me digere: Çima em nikarin romana bajarvanîyê binivsinîn? Divê baş bê zanîn, heya van qonaxan derbas nekin, em kezîyan bi dest naxin.

***Lê romana kurdi çawa ye? Kijan şêwaz tê hezkirin û li pêş e gelo?***

Tije hevî ye, pêşde dikeve; lê nivîskarên me di hevpeyvînan de û di malperan de tim gazinên tunebuna nirxandinê dikin. Ji wan dipirsim:Wê kî binirxîne? Rexnegir tunebin hûn zendên xwe bimalin û vî karî bikin. Carna pirtûk çap dibin lê baş redekte nebûne, şaşîyên rêzimanî pirtûkê ji qîmet de dixe. Tiştekî din jî mijara romanê ye. Pirrê romanan li dora xalekê diçin û tên. Welatê me ji aliyê mijaran de gelekî dewlemend e. Têkiliya romanê û sînemayê jî divê hebe lê ka sînemaya kurdî? Ku berhemên kurdî ji şano û sînemayê re bibin alav wê ji bo romanê jî û ji bo sînemaya kurdî jî bibe hêz.

***Helbesta kurdi an ji ya çîrokê, gelo kijan şêwaz (cûre) li pêş in ? weki hûn dizanin klasik ji hê tên xwendin.***

Helbesta kurdî ji girtîgeha qesarên pûç filîte dibe, hêdî hêdî gelek helbestnûs bi rik û kedeke mezin bi salan e serê xwe pê diêşînin. Ku demeke dirêj mirov li ser karekî hûr bibe zanetî û hostetî jî di giyanê wî de diqewîme, minakên vê gewma pirrin: Îrfan Amîda, Arjen Arî, Berken Bereh, Rojen Barnas, Lal Laleş… Helbest bala xwendakaran jî dikşîne. Pirtûka Rênas Jiyan "Janya" çapa didoyan kir. Klasîkên kurdî ji nû ve dibin sitran. Berhemên klasîk yên bela wela têne berhev kirin û ji nû ve çapên wan dibin. Ji girtîgehan êdî helbestên hêjayê xwendinê têne ber destên me. Jin her ku diçe bêtir di helbesta kurdî de cih digrin.



Özlem (Wêne: Rûdaw)

***Weki xwendevanek, gelo sedemên kêm xwendina zimanê kurdi çi nin?***

Sedema herî girîng, bi pirranî tênegihiştina bi girîngiya zimanê bav û kalan e. Gelek mirov dibêjin em fêhm nakin tiştên tên nivîsandin. Ez dipirsim 'ew ji bo zimanên xwe fehm bikin çi qasî kedê didin, çi dikin, ji dil jî dixwazin bi zimanên xwe bijîn?' Ji bo xwendina kurdî zêde bibe divê ev têgeh baş bên fêhm kirin.